BasNûçe
HERDEM RASTÎ
Rojname ya heftane ya nûçeyî - 2.5 TL
Hejmar: 66
17 - 23 Tebax 2015 basnews.com



Folklora kurdî bo cîhanê ezmûn e
R15

# Qeyrana serokatiyê çareser dibe




Li Herema Kurdistanê qeyrana serokatiyê gihîşte xeleka dawî. Niha bala raya giştî li ser biryara PDK'ê ye. Piştî ku Îranê hefteyek berê razîbûna xwe bi dirêjkirina maweya serokatiya Barzanî da xuyakirin û bi RHK'ê re peymanên sazkirina xetên neftê îmze kir, YNK û Tevgera Goran jî helwesta xwe nerm kirin.

Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî, piştî ku rewş ber bi aloziyê ve çû hişyarî da partiyên siyasî. Barzanî got; "Di çareseriya kêşeyê de li hev bikin. Ger hûn li hev nekin wê hilbijartina pêşwext bê lidarxistin. Pêwîst bike em dikarin şêweyê hilbijartina serokatiyê jî pêşkêşî raya gel bikin." R02 - 03



## Rojava di 'tampona' Tirkiye û DYA'yê de!

Bi destpêkirina qonaxa pêvajoya serxwebûna Herêma Kurdistanê re hêz û dewletên li hember destkeftiyên kurdan derdiketin dîsa ketin nava tifaq û hevgirtinekê û êdî ji ser DAIŞ'ê êrîşî kurdan kirin da ku kurd nebin xwedî destkeftî û rêveberiya xwe. Li hêla din bi destpêkirina qeyrana siyasî ya li Sûriye'yê re kurdên Rojavayê jî dest bi parastin û rêvebirina heremên xwe kirin. R04-5

## Kurdistan defakto serbixwe ye!

Pisporê Pêwendiyên Navnetewî û Gerînendeyê Giştî yê Spêda Dr. Ebdulkerîm Ahmed egeriya ku Rojava bi Herêma Kurdistanê ve bê grêdan û nefta Kurdistanê bi ser Rojava ve arasteyî Derya Spî bibe pêkan dibîne û vê yekê bi têkbirina DAIŞ'ê ve pêwendîdar dike. Ahmed anî ziman ku Kurdistan êdî bi avayekî defakto gihîştiye serxwebûnê. R08-9

## Îran kolberên kurd dikuje!
R12

## Jin mohra xwe li bazarê jî dixin
R14

# RHK bê serok namîne!



Mustafa Turan

Li Herema Kurdistanê qeyrana serokatiyê gihîşte xeleka dawî û bala raya giştî li ser biryara PDK'ê ye. Piştî ku Îranê hefteyek berê razîbûna xwe bi dirêjkirina maweya serokatiya Barzanî da xuyakirin û bi Rêveberiya Herêma Kurdistanê (RHK) re peymanên sazkirina xetên neftê îmze kir, YNK û Tevgera Goran jî di mijara qeyranê de nerm bûn. Herdû partî pêşniyaza bi şerta ji alî parlamenê ve hilbijartina Serokê Herêmê, 2 salên din dirêjkirina serokatiya Mesûd Barzanî li PDK'ê kirin. Di vê kêliya ku ji 20'ê Tebaxê roja tijebûna maweya serokatiya Barzanî re çend rojên mane de, Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî, piştî ku dît rewş ber bi aloziyê ve diçe hişyarî da partiyên siyasî. Barzanî ji partiyan re got: "Di çareseriya kêşeyê de li hev bikin. Ger ku hûn li hev nekin wê hilbijartina pêşwext bê lidarxistin. Ger ku pêwîst bike em dikarin şêweyê hilbijartina serokatiyê jî bi rêya referandûmê pêşkêşî raya gel bikin."

Di van rojên qeyranê de her wiha Tevgera Goran pêşniyaza rêveberiya dûqolî anî rojevê, lê belê ev pêşniyaz ji alî YNK'ê ve hate redkirin. Lê dîsa jî ji ber metirsiya ku egerî heye hin endamên meclîsê piştgirî bidine vê pêşniyaza Goran, serkirdeyên YNK'ê hişyarî li endamên meclîsê kirin ku piştevaniya vê pêşniyazê nekin.

## Barzanî: Bila gel biryar bide

Ji ber ku rewş ber bi aloziyeke mezintir ve çû Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî bi sê şertan pêşniyaz li partiyan kir ku bi rêyên din ên çareseriya qeyranê biceribînin. Barzanî ragihand ku dikare şêweyê hilbijartina Serokê Herêmê ji bi referandûmê ji gel bê pirsîn û wiha dom kir: "Di derbarê qeyranê de min di 29'ê Hezîranê de ji gel re ragihandibû ku ger qeyran heta 20'ê Tebaxê dom bike ez ê helweta xwe diyar bikin. Qeyran nehatiye çareserkirin û hin derdor bi amadekirina zemîna derbê re mijûl in. Ew derdorên ku di 2005'an de li dij ji alî parlamenê ve hilbijartina serokatiyê derdiketin, ji bo berjewendiyên xwe yên şexsî û siyasî niha bi hinceta ku serokatî partiyên siyasî lawaz dike, hewl didin ku Serokê Herêmê ji alî gel ve neyê hilbijartin." Barzanî di berdewamiya peyama xwe de helwesta pêşkêşkirina parlamenê ya pêşnûmayasaya ku erka hilbijartina Serokê Herêmê radestî parlamenê dike wek helwesteke qeyrançêker bi nav kir, banga ku di 16'ê Tîrmeha 2013'an de li partiyên siyasî û parlemenê kiribû bi bîr xist û wiha dom kir:



"Wê demê min pêşniyaza nivîsandina destûreke nû kiribû. Min vê bangê ne ji bo parastina serokatiya xwe, ji bo ku RHK'ê bibe xwedî destûreke nû û ji bo ku rêveberiya siyasî di bin çavdêriya gel de bê meşandin kiribû. Lê belê hin kes dibêjin ku 'Çawa me projeya destûrê ya wê demê têk biribe, em ê yasaya serokatiyê jî bi heman şêweyê biguherînin û em ê serê wan li ber xwe pêl bikin, heta em ê wan ji Hewlêrê derxînin."

Di peyama xwe de Barzanî balê kêşa ser nîqaşên 2004'an ên li ser dabeşkirina parêzgehan a Herêma Kurdistanê jî û diyar kir ku wek wê demê, niha jî ez ê beşdarî van nîqaşan nebim û ez ê destûr nedim ku Kurdistan wek parêzgehî bê dabeşkirin.

## Ji yasayên şoreşê derbasbûna destûrê

Barzanî di peyama xwe de bi bîr xist ku şoreşa 1991'an bi şîara azadî, dadwerî û demokrasiyê destpê kirî ye û da zanîn ku ji ber di 1991'an de li Koyeyê wî biryara derbasbûna destûrê daye û gotiye ku 'Li Kurdistanê li ser destûrê tu hêz tune ye' ew pir serbilind e û bi bîr xist ku Sekreterê Giştî yê YNK'ê Mam Celal Talabanî jî ji bo tovên aşitî û demokrasiyê li Kurdistanê kulîlk vekin pir ked daye. Barzanî ragihand ku di pêvajoyeke wiha ku li dij DAIŞ'ê şerekî dijwar tê meşandin de wê nexwestiye ku peyameke bi vî rengî belav bike, lê belê ew bêçar maye ku vê peyamê ragihîne.

Di vê pêvajoya ku şer û kaosa ku ji ber DAIŞ'ê li serê Rojhilata Navîn bûye bela de, ji ber ku di raya giştî ya kurd û di qada navneteweyî de bi saya pêwendiyên xwe yên dîplomatîk xwedî grîngiyeke mezin e û di warê dabînkirina çek û teqemeniyên pêwîst ên hêzên Pêşmerge de roleke wî ya grîng heye PDK, şert dibîne ku Mesûd Barzanî li ser erka Serokatiya Herêmê bimîne û wa bawer dike ku ger Barzanî wek serok nemîne wê pêwendiyên dîplomatîk ên navneteweyî û hemû deskeftiyên dîplomatîk derz bixwin; Lewre rîwangeya di siberoja nêzîk de ragihandina serxwebûnê ya ji alî Barzanî ve, ji alî rêveberên DYA bêtir ji alî derdorên leşkerî û sîxurî yên DYA'yê ve tê ziman.

## Serxwebûn di serdema piştî Obama de veşartî ye

Êrîşên DAIŞ'ê yên ku ji nişk ve li dij Şengal û deverên din pêk hatin, her çiqas di kurdan de şikesteke derûnî ya demkî peyda kiribe jî, divê neyê ji bîrkirin ku ev pêvajoya ku DAIŞ'ê da destpêkirin ji bo kurdan derfetên destkeftiyên dîrokî jî peyda kirine. Piştî reva artêşa Iraqê ya ji herêmên bi nakok ên ku her çiqas di destûra Iraqê de rêbazên çareserkirina wan diyar be jî ji alî Bexdayê ve pirsgirêkên wê nedihatin çareserkirin ev herêm ketin destê Pêşmerge, destkeftiyên li Rojavayê Kurdistanê û sempatiya kurdan a di raya giştî ya dinyayê de hate afirandin, diyar dikin ku ev pêvajoya bi aloz di heman demê de ji bo kurdan fersendên mezin jî peyda kirî ye.

Berovajiyê serkirdeyiya polîtîk pêşniyazkirina dabeşkirina Iraqê ya aliyê lekerî yê DYA'yê bêguman ji bo aramiya Kurdistan û Rojhilata navîn rêbaza herî goncav e. Piştî ku DYA ji bidestxistina Mûsilê ya DAIŞ'ê re bêdeng ma, lê piştî ku DAIŞ'ê berê xwe da Hewlêrê ket nav hewldanên bergiriya Herêma Kurdistanê, lê di heman demê de ısrarkirina yekdestiya Iraqê dûalîtiya DYA'yê aşkere bike jî, israra berdewamiya serokatiya Barzanî ya heta piştî serdema piştî Obama, dikare referandûma serxwebûnê pêkan bike.

Her çiqas polîtîkayên herêmî yên kurtedemî ji guherînan re vekirî be û helwesta Îranê ya li dij serxwebûna Kurdistanê zelal be jî, helwesta Tirkiye'ya ku di kêliya DAIŞ êrêşên xwe yên li ser Kurdistan da destpêkirin di bîrdanka Başûr de hê jî zindî ye.

## Hecî Mehmûd: Qeyran dikare bi hikûmeteke nû bê çareserkirin

Serokê Partiya Demokrat a Sosyalîst a Kurdistanê(PDSK) û Fermandarê Pêşmerge yê Eniya Kerkûkê Mihemed Hecî Mehmûd di derbarê xeteriyên qeyrana serokatiyê de pirsên BasNûçeyê bersivand. Mehmûd diyar kir ku qeyran dikare bi helkefta aliyan bê çareserkirin û ev yek dikare bi sazkirina hikûmeteke nû bê kirin. Mehmûd diyar kir ku alî bi zimanekî tûnd hev rexne dikin û ev yek dibe sedemê mezinbûna qeyranê û dom kir: "5 partiyên ku di parlamenê de komên wan hene bi hev re hevkariyê kirine û vê hikûmeta heyî damezirandine. Ji ber vê yekê, divê vê qeyranê jî bi heman hevkariyê çareser bikin; Lewre li Kurdistanê pirsgirêk tu carî bi darê zorê çareser nebûne."

Mihemed Hecî Mehmûd ragihand ku her çiqas ew alîgirêji alî gel ve hilbijartina Serokê Herêmê be jî, yên ku dikarin pirsgirêkê çareser bikin PDK û YNK ne û ger ku ev her dû partiyên siyasî di nav hev de li hev bikin wê pirsgirêk wisa bê çareserkirin. Mehmûd hatina şandeyên DYA, Îran û Tirkiyeyê ya Herêma Kurdistanê bi bîr xist û hişyar kir ku ger kurd pirsgirêkên xwe yên navxweyî çareser nekin, wê hêzên derve destwerdana Herêma Kurdistanê bikin.

## Şemal Abdula: Rehên dîrokî yên qeyranê hene

Rojnameger Şemal Abula ku herêmê û qeyranê ji nêz ve dişopîne balê kêşa ser rehên dîrokî yên qeyrana siyasî û anî ziman ku ev kêşe bi dijayetiya Barzaniyan ya ku di salên 1960'an li hember Serokê PDK'ê Mistefa Barzanî hatiye destpêkirin re têkildar e. Abdullah di diyaloga li gel Rojnameya me BasNûçeyê de da zanîn ku YNK dizane serxwebûna Kurdistanê nêzîk e, naxwaze ku serxwebûn ji alî Barzanî ve bê ragihandin û ji bo pêşî li vê yekê bigire vê qeyranê durust kirî ye. Abdula, anî ziman ku bi ragihandina serxwebûnê re wê Barzanî ne tenê li Başûrê Kurdistanê, her wiha li hemû Kurdistanê bibe serkirdeyekî bê alternatîf û ji ber vê yekê YNK û Goran dixwazin kesayetekî din bikin Serokê Herêmê û serxwebûnê ragihînin, lê belê ji ber kesayetek ku dikaribe cihê Barzanî tijî bike nabînin vê qeyranê didomînin. Şemal Abdula wiha dom kir: "Di sala 1964'an de, dema ku ji bilî PDK'ê tu partî hîna nehatibû damezirandin, di kongreya PDK'ê ya wê salê de serokatiya Mistefa Barzanî nehate pesendkirin. Ev dûbendiya ku di nav PDK'ê de rû da bû sedem ku xela Silêmanî YNK'ê damezirîne û PDK'ê lawaz bike. Piştî vê pêvajoyê siyaseta Başûrê Kurdistanê li ser van xetên siyasî tekoşîna neteweyî dom kir. Sedemê qeyrana siyasî ya îroyîn jî berdewamiya dûbendiya wê demê ye. Ango ev qeyran sîtava dij-Barzanîtiya xeta Silêmanî ye"

## Serhildêriya Rojhilat û rola Barzanî

Şemal Abdula li ser nêzîkahiya Îran, Tirkiye û DYA'yê ya qeyrana siyasî jî rawestiya û da zanîn ku li Rojhilatê Kurdistanê du hêzên sereke yên leşkerî û siyasî hene, yek ji van hêzan wek bîrdozî nêzîkî Barzanî ye, ji ber ku Îran ji vê yekê haydar e, bawer dike ku serokatiya Barzani nedome, ev yek dikare bibe hincet ku ew hêza ku nêzîkî Barzanî ye li Rojhilatê Kurdistanê dest bi şerê çekdarî bike, ji ber vê yekê jî Îran bi 2 sal dirêjkirina maweya Serokê RHK'ê Birêz Mesûd Barzanî razî bûye û ev rewş pêkan dike ku Barzanî 2 salên din jî postê serokatiyê berdewam bike. Abdula wiha dom kir: "Partî û rêxistinên ji Rojhilat ên ku li Herêma Kurdistanê ne xwe bi çek û rext dikin û derbasî Rojhilat dibin. Ev yek Îranê metirsîdar dike û ger ku li Rojhilat şer û pevçûn rû bidin, Barzanî dikare van şer û pevçûnan rawestîne. Sedemên veşartî yên Îranê bêçar dike ku bi Herêma Kurdistanê re peymanên sazkirina xetên neftê û frotina neftê îmze bike. Abdula, angaşt ku dû hefte berê Cîgirê Sekreterê Giştî yê Lijneya Parastinê ya Neteweyî ya Îranê Ahmed Amîrî hatiye Hewlêrê û bi Barzanî re hevdîtinek pêk anî ye û di hevdîtinê de ji Barzanî re gotiye, "Li Rojhilat beşek mezin a kurd rikberiya te dike, lê belê beşeke din ya mezin jî bi te ve grêdayî ne" Abdula anî ziman ku ne tenê Îran û Tirkiye, gellek welatên herêmê û yên rojavayî jî piştgirî didin berdewamiya serokatiya Mesûd Barzanî.

Şemal Abdula di bedewamiya axaftina xwe de li ser dûbendiya helwestî ya rêveberî û burokrasiya leşkerî ya DYA'yê ya li ser serxwebûna Kurdistanê jî rawestiya, serdema piştî Obama destnîşan kir û diyar kir ku bi hatina serokekî komarparêz wê bi erênî nêzîkî ragihandina serxwebûnê bibe. Abdula da zanin ku ev dûbendiya DYA, dûbendiya rîwangeya Wezareta Parastinê û ya Karên Derve ye û got: "Divê RHK'ê ji vê dûbendiya DYA'yê bêtir li ser çareserkirina qeyrana navxwyî raweste û hewl bide ku bi serkeftî ji vê qeyranê rizgar bibe; Lewre ji bo serxwebûnê tiştê herî diyarker yekîtiya neteweyî ye.

## YNK li alternatîfek digere

Di nav nîqaşên qeyrana serokatiyê de hate ragihandin ku YNK li hember serokatiya Barzanî di nav lêgerîna alternatîfekî de ye. Li gor angaştan Cîgirê Sekreterê Giştî yê YNK'ê Berhem Salih ji bo li hember Barzanî bibe namzetê serokatiyê pêşniyazek pêşkêşî Sekreterê Giştî yê Tevgera Goran Newşîrwan Mistefa kirî ye û egerî heye ku ev pêşniyaza Berhem Salih di civîna ku wê PDK û YNK ji bo çareseriya qeyranê pêk bînin de jî wê bê nîqaşkirin. Tê gotin ku ev pêşniyaza ku Berhem Salih wek proje amade kirî ye gihîştiye ber destê Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî jî. Li gor vê projeyê wê Barzanî 2 salên din jî postê serokatiyê bidomîne, piştî pêşnûmayasaya ku bi mebesta erka hilbijartina Serokê Herêmê radestî parlamenê bike ji alî YNK, Tevgera Goran û partiyên Îslamî ve ji parlamenê re hatibû pêşkêşkirin wek fermî bê pesendkirin, di hilbijartina 2 salên din de Newşirwan Mistefa bibe namzetê Serokatiya Herêmê ya ku wê ji alî parlamenê ve bê hilbijartin. Li gor projeyê, di navbera van dû salên ku wek 'serdema demkî' hatiye destnîşankirin de, wê Hêzên Pêşmerge di bin banê Wezareta Pêşmerge de bêne yekdestkirin, bi mebesta ku pêdiviyên aborî, frotina neftê û pêwendiyên Hewlêr û Bexdayê bişopîne û raportên xwe yên li ser van babetan pêşkêşî Serokê Herêmê bike wê lijneyeke bi navê Lijneya Serokatiyê bê damezirandin.

Ji alî din ve Serokê Koma YNK'ê ya Parlamenê Bêgerd Talabanî ragihand ku wek YNK, ew di helwesta xwe ya li ser hilbijartina Serokê Herêmê de bi israr in û wan projeya xwe pêşkêşî serokê parlamenê kirî ye. Bêgerd Talabanî di daxuyaniya xwe ya bi ser hesabê xwe yê medyaya civakî de bang li hilbijêrên YNK'ê kir û ragihand ku ew ê YNK ji helwesta xwe paş ve gav nehavêje.

## Nêçîrvan Barzanî jî piştgirî da projeyê

Piştî aşkerebûna projeya Berhem Salih Cîgirê Sekreterê Giştî yê YNK'ê Kosret Resûl banga piştgirîdayîna projeyê kir û diyar kir ku rêbaza herî baş ev proje ye. Piştî banga Kosret Resûl Serokwezîrê RHK'ê Nêçîrvan Barzanî banga Kosret Resûl bi erênî pêşwazî kir û destnîşan kir ku projeya Berhem Salih hêvîdariya kurd û dostên kurdan dibersivîne û şayanî nîqaşê ye. Nêçîrvan Barzanî di daxuyaniya xwe ya nivîskî ya di derbarê vê projeyê de anî ziman ku ji bo qeyrana serokatiyê bi rêbazên diyalog û yekîtiyê bêne çareserkirin PDK pir helwestiyaye, di navbera PDK û YNK'ê de hevkariyeke ku bi salane dom dike heye û ew bawer dike ku her dû alî di çarçoveya rêzdariyê de dikarin vê pirsgirêkê çareser bikin.

## Li dij Pêşmerge çekên kîmyewî hatin birakaranîn

Hefteya çûyî, piştî êrîşeke bi topên hewanî ya DAIŞ'ê, nêzîkî 60 Pêşmerge bi hinceta ku astengiya bêhndanê dikêşînin û çermê wan şewitî ye rakirin nexweşxaneyan. Piştî vê buyerê hate gotin ku egerî heye ku DAIŞ'ê gaza hardalê bikar anî ye. Di destpêka şerê Herêma Kurdistanê de jî car caran angaştên bi vî rengî hatibûn rojevê lê paşê encam jê derneketibûn. Lê piştî vê angaşta dawî rayedarên DYA û Alman jî ragihandin ku egerî heye DAIŞ'ê gaza hardalê bikar anîbe. Berdevkê Lijneya Parastinê ya Neteweyî ya DYA'yê Alistair baskey da zanîn ku ji bo mijar bê aşkerekirin DYA'yê dest bi lêpirsînê kirî ye û piştî lêpirsînê ew ê encamên lêpirsînê ragihînin.

Berdevkê Wezareta Parastinê ya Almanya Ingo Gerhartz jî di derbarê mijarê de ji ajansa AFP'ê re daxuyand ku li dij Pêşmerge êrîşên kîmyewî pêk hatine, ev yek li gor hiqûqa navneteweyî tawaneke mezin e, li ser vê bûyerê lêpirsîn hatine destpêkirin û di encama lêpirsînê de wê Almanya li ser vê bûyerê helwesta xwe ji raya giştî re ragihîne. Piştî vê êrîşa DAIŞ'ê ya ku tê gotin bûjenên kimyewî bikar anîye, fermandarên Pêşmerge ferman dan ku hemû Pêşmergeyên eniyan maskên gazê bikar bînin.



# Rojava di ‘tampona’ Tirkiye û DYA’yê de!

Mehmet Salih Batırhan

Bi destpêkirina qonaxa pêvajoya serxwebûna Herêma Kurdistanê re hêz û dewletên li hember destkeftiyên kurdan derdiketin dîsa ketin nava tifaq û hevgirtinekê û êdî ji ser DAIŞ’ê êrîşî kurdan kirin da ku kurd nebin xwedî destkeftî û rêveberiya xwe. Li hêla din bi destpêkirina qeyrana siyasî ya li Sûriye’yê re kurdên Rojavayê jî dest bi parastin û rêvebirina heremên xwe kirin. Her wiha hêzên ku tekane armanca wan dagirkirina Kurdistanê ye û yên ku ji destkeftiyên kurdan ên li herdû perçeyan aciz bûn. Bi dehan komên îslamî yên tûndrew bi ser Rojava ve şandin û bûn sedema xesarên mezin.

Her wiha li hêla din niha rola hêzên kurdên Rojava li hemberî DAIŞ’ê û komên din ên tûndrew serkeftinên mezin bi dest xistin û li Rojava weke hêzêke bejayî ya koalîsyonê şer dikirin bûye cihê nîqaş û gûmanan. Li layekî koalîsyona ku Emerîka serperiştiya wê dike eşkere dike ku ewê li hember DAIŞ’ê di piştevaniya PYD’ê de berdewam bin û tifaqa wan a li gel PYD’ê berdewam bike. Li layê din jî Tirkiye ya ku bi tifaq û piştevaniya DAIŞ’ê dihat tawanbarkirin piştî têkçûna DAIŞ’ê nebûna DAIŞ’ê ya li nêzîkî sînorê Kurdistanê bû sedem ku Tirkiye ji xwe re hevkarên nû peyda bike.

Her wiha daxwaza Tirkiye’yê ya “herêma tampon” a li Cerablûs û Ezazê û perwerdekirina milişeyên tirkmen û daxuyaniyên rayedarên Tirkiye’yê yên li hember PYD’ê û YPG’ê dibin cihê şik û gumanê.

Li aliyê din vekişîna El Nûsra’yê ya ji derdora Cerablûs û Ezazê û bicihbûna milîşeyên tirkmen li herêmê di raya giştî ya cihanê de jî deng veda û li gor analîstan egera şerekî di navbera milîşeyên tirkmen û kurdan de rûbide. Her çend Rûsya û Emerîka li hember daxuyanî û stratejiyên Tirkiye radiwestin jî Tirkiye bi kiryarên xwe peymanên navdewletî binpê dike. Perwerdekirina milîşeyên tirkmen û di avakirina ‘herêma tampon’ de israra Tirkiya’yê li Rojavayê û Sûriye’yê deriyên nû yên şer û koçberiyê vedike.

Siyaseta yek alî ya Rojava tifaqa wan a bi gelek komên çekdar û rejima Esed re hevnegirtin û êrîşên wan ên li ser partiyên din ên kurd jî dibin cihê şik û guman e. Her wiha di êrîşên dawî yên li ser Kobanê de lawaziya enformasyon û hêza wan a navxweyî û îcaze nedana wan a ji bo derbasbûna Pêşmergeyên Rojava di warê parastina xelk û destkeftiyên Rojava de dibe cihê endîşeyan.

## ‘Di navbera Tirkiye û Emerîka’yê de rageşî heye’

Li hêla din Rojnameya Newyork Times jî eşkere kir ku ji ber “herêma tampon” rageşî di navbera Emerîka û Tirkiye’yê de heye. Her wiha rojnameyê eşkere kir ku Tirkiyê di derbarê avakirina herêma tampon de gelekî daxuyanî dane û ew jî mebesta wê dûr xistiye û ev yek jî bûye sedema rageşiya di navbera herdû welatan de. Nûçeya rojnameyê wiha ye: "Emerîka û Tirkiye di derbarê avakirina herêmeke tampon a li bakurê Sûriye’yê de gelek daxuyaniyên ji hev cûda belav kirin. Ev yek jî dide eşkerekirin ku ewê rageşiya nepenî ya di navbera herdu welatan de berdewam be.“

## Emerîka sê caran derewand

Wezareta Derve ya Amerîka ragihand, nûçe û angaştên ku dibêjin “YPG nikare derbasî wan herêmên ku DAIŞ jê tê derxistin, bibe” derew in. Di medyaya Tirkiye’yê de “li ser zarê rayedaran” hatibû îdiakirin ku Tirkiye û Emerîka’yê li ser wê yekê li hev kirine ku hêzên YPG’ê nikaribin derbasî wan deverên ku DAIŞê jê tên derxistin, bibin. Li ser van îdiayan, berdevkê Wezareta Derve yê Emerîkayê Mark Toner di civîneke bi rojnamevanan re de got, ew nûçe ne rast in. Mark Toner çend roj berê jî daxuyaniya şêwirmendê Wezareta Derve yê Tirkiyê Ferîdûn Sinirlîoglu, ku gotibû “Emerîka û Tirkiye li ser herêma aram li hev kirine” derewandibû û gotibû, me tenê li ser êrişên hewayî li hev kiriye ne li ser “herêma aram.” Du hefte beriya niha jî medyaya Tirkiye’yê îdia kiribû ku Emerîka’yê gotiye ew êdî alîkariya YPG’ê nakin û eger YPG derbasî “herêma aram” bibe dê lê bidin. Toner ew daxuyanî jî derewandibû û gotibû, Emerîka wê alîkariya YPG’ê bidomîne.

## ‘Wê Emerîka piştgiriya kurdan bike’

Serokê Lêkolînên Rojhilata Navîn Şaban Kardaş (ORSAM) ji BasNûçe’yê re axivî û behsa rageşiya di navbera Emerîka û Tirkiyê de kir. Kardaş li ser plana Tirkiye’yê ya ‘herêma tampon’ jî rawestiya û wiha got; “Rayedarên Emerîka û Tirkiye’yê daxuyaniyên ji hev cûda belav dikin li ser meseleya herêma tampon û Rojava. Emerîka û Tirkiye di hin xalan de lihevkirine. Lê belê Emerîka naxwaze Tirkiye herêma tampon ava bike. Ew dixwazin Tirkiye balafirxaneyan ji koalîsyonê re veke û deriyên xwe li çekdarên îslamî re bigre.” Her wiha Kardaş amaje bi wê yekê jî kir ku planên Emerîka’yê yên serbixwe jî hene û ew jî naxwazin di wan stratejiyan de cih bidin Tirkiye û ew dixwazin di piştevaniya kurdan de berdewam bin. Kardaş ragihand ku li gor stratejiya Amerîka ewê di piştevaniya kurdan de berdewam be û di şerê li hember DAIŞ’ê de alîkariyê bide wan.

## El Nûsra Ezazê radestî milîşeyên tirkmen dike

Li gor daxuyaniya El Nûsra ya bi ser El Kaidê ve wan dest ji hin derdorên ku Tirkiye weke “herêma tampon” ragihandiye û ew ê ji bakurê Helebê jî derkevin. Her wiha beriya du hefteyan jî El Nûsra’yê bi çekên giran êrîşî Efrînê kiribû. Rêvebirên Efrînê daxuyandibûn ku ev demeke dirêj e Tirkiyê bi wan re di peywendiyê de ye û alîkariya wan a çekdarî dike. Li hêla din hat zanîn ku Amerîka jî li hember wê yekê derdikeve ku El Nûsra di nav herêma tampon de cih bigre. Li gor daxuyaniya El Nûsra’yê wan hêza xwe li derdora Helebê kom kiriye û hedefa wan ew e ku Lazkiyê dagir bikin. Li hêla din hate zanîn ku milîşeyên tirkmen li şûna herêma El Nûsra’yê bi cih dibin û wan li wir baregehên xwe bi cih kirine.

Ji Efrînê Rojnameger Mihemed Roj jî li ser rûdanên dawî û tevgerên milîşeyên tirkmen agahî dan BasNûçe’yê. Roj eşkerekir ku “Liva Sultan Murad û Liva Fatih Sultan Mehmet” a tirkmenan li herêmê di nava tevgereke nû de ne û El Nûsra herêmên di destê xwe de radestî wan dike. Di berdewamiya axaftina xwe de Roj amaje bi wê yekê kir ku wan ji zû de ye behsa hevalbendiya Tirkiye’yê û komên radîkal dikirine, lê belê niha hemû tişt eşkere dibe. Roj her wiha da zanîn ku Tirkiye komên îslamî li hember kurdan bikartîne û ji ber vê yekê jî piştevaniya wan dike.

Herêma ku El Nûsra radestî milîşeyên tirkmen dike. Herêma Ezaz û Cerablûsê ye. Di navbera Kobanê û Efrînê de cih digre û her wiha Tirkiye behsa wê yekê dike ku dixwaze li wir herêmêke tampon ava bike. Rojnameya Financial Times jî li ser rûdanên dawî yên li Rojava rawestiya û eşkere kir ku Tirkiye ji komên muxalefeta Sûriye’yê xwestiye ku ji xeta Ezaz û Cerablûsê derkevin û wê derê radestî milîşeyên tirkmen bikin.

## Milîşeyên tirkmen li Ezazê ne

Serokê Giştî yê Tevgera Netewî ya Tirkmenan Tarik Silo Cevizci jî ji BBC’yê re teqez kir ku El Nûsra herêmên di destê wê deye radestî milîşeyên tirkmen dike. Silo eşkere kir ku ew di gel 50 wesayîtan ji bakurê Helebê ber bi Ezaz û Cerablûsê ve hatine û ewê li derdora herêma tampon a Tirkiye ava bike bi cih bibin. Tarik Silo Cevizci amaje bi wê yekê jî kir ku ewê yekîneyên xwe ber bi herêmê ve bikşînîn û wiha berdewam kir: “Di gel çekên giran bi 50 wesayîtî em ji Helebê ber bi vir ve hatin. Bi taybetî em li derdora ku tirkmen lê dijîn bi cih bûn. Di rojên pêş de em ê hin yekîneyên din ber bi vir ve bikşînin. Ew ê 2 hezar kes li vir hebe. Piştî DAIŞ têk çû jî ew ê 2500- 3000 kes li vir bicih bibe. “

## ‘Tirkiye hevalbendê komên radîkal e’

Fermandeyê Giştî ye YPG’ê Sîpan Hemo li ser rûdanên dawî, radestkirina şervanên YPG’ê ya ji bo El Nûsra’yê û herêma tampon agahî dan me. Hemo, da zanîn ku Tirkiye bi El Nûsra û DAIŞ’ê re danûstendinên fermî dike û radestkirina 6 şervanên birîndar ên YPG’yî ya ji bo El Nûsra’yê û vekişîna El Nûsra’yê ya ji derdora Ezazê dide zanîn ku DAIŞ Tirkiye û El Nûsra heval bendên hev in. Di berdewama axaftina xwe de Hemo eşkere kir ku di demeke nêz de ewê Tirkiye hewl bide ku planên xwe bi cih bike û wiha berdewam kir; “Weke lîstikeke şanoyê ewê bi navê operasyona li dijî DAIŞ’ê herêma Ezaz û Cerablûsê radestî komên bi ser Tirkiye’yê ve ne bikin. Planeke hevbeş a Tirkiye, Îran û Sûriye’yê ya li ser Ezaz û Cerablûsê yê destpêkiriye. Di demeke nêz de egera wê heye em bi DAIŞ’iyên Tirkiye’yê rê rû bi rû bimînin.“

## ‘Ev hemû lîstik in’

Hemo amaje bi wê yekê jî kir ku Tirkiye geh bi hinceta paşeroja Sûriye geh bi haceta DAIŞ’ê destêwerdana Sûriye’yê dike lê belê Rojava ji xwe re dike armanc. Hemo bal kişand ser “herêma tampon” jî û wiha berdewam kir: “Tirkiye niha jî j bo ku kantonên Efrîn û Kobanê negihîjin hev polîtîkayekê saz dike. Ji bo ku vê polîtîkaya xwe jî meşrû bike. Milîşeyên tirkmen ên di nava Artêşa Azad de bikartîne. Bi vê yekê dixwaze wan li sînorê di navbera DAIŞ û Tirkiye’yê de bi cih bike. Ev hemû listik in.” Di berdewamiya axaftina xwe de Hemo daxuyand ku ew baş dizanin ku Tirkiye û El Nûsra’yê bi hev re tifaq kiriye û di destê wan de belge jî hene. Hemo eşkere kir ku endamên El Nûsra’yê û rayedarên Tirkiye’yê li bajarê Kilisê li hev civiyane û di destê wan de belge jî hene. Hemo da zanîn ku yekîneya ku ji mîlîşeyên Sultan Murad û Fatih Sultan Mehmed pêk tê bi tenê ji 40 kesan pêk dihatine û niha behsa bi hezara kesan dikin. Her wiha Hemo ragihand ku Tirkiye ji El Nûsra xwestiye ku derdora Ezazê radestî komên milîşe bike û El Nûsra gotina Tirkiye’yê bi cih aniye.

Li hêla din Hemo amaje bi wê yekê jî kir ku li hember destkeftiyên kurdan proseyekê destpêkiriye û dijminên kurdan ên bi salan li ser maseya têkbirina kurdan li hev kombûne. Hemo her wiha ragihand ku destkeftî û pêşketinên kurdên Rojava nerazîbûn bi dijminên kurdan re çêkiriye û niha li hember kurdan bereyek avakirine. Hemo bal kişand ser danûstendinên dawî yên di navbera Îran û Tirkiye’yê de jî û wiha berdewam kir: “Ev demeke peywendiyên germ di navbera Îran û Tirkiye’yê de rû didin. Di demeke wisa de pêkhatina peywendiyên bi vî rengî watedar in. Mebesteke wan danûstendinan heye, ew jî dijminatiya kurda ye. Tirkiye ji Îran û Sûriye’yê re dibêje ‘Hûn rehetbin derdê me ne axa Sûriye’yê ye, derdê me pêşketina kurda ye.’ Projeya Tirkiye’yê destpêkiriye.”

## ‘YPG li Dêrazorê ye’

Li gor nûçeyên heremê YPG bo alîkariya Artêşa Sûriye’yê di şerê li dijî DAIŞ’ê de berê xwe da parêzgeha Dêrazorê ya li başûrê Hesekê. Li gor agahiyên ku hatine bidestxistin ji bajarê Hesekê hêzek ji şervanên YPG’ê ber bi parêzgeha Dêrazor a li başûrê Hesekê û li ser sînorê Iraqê hatiye şandin. Hat zanîn ku ew hêza YPG’ê ji bo ku alîkariya Artêşa Azad a Sûriye’yê bike û li kêleka hêzên hikûmeta li dijî DAIŞ’ê li çiyayê Terde li Dêrazorê şer bikin, hatine şandin. YPG’ê piştî wê yekê hêz şande Dêrazorê.

Hevserokê Meclîsa Zagonsaz a Cizîrê Ekrem Hiso jî li ser îddîaya çûna şervanên YPG’ê ya ji bo Dêrazorê rawestiya û ji BasNûçe’yê re axivî. Ekrem Hiso eşkere kir ku ew li hember DAIŞ’ê şer dikin û perçeyekî Sûriye ya demokratîk in û heta ku DAIŞ li nav xaka Sûrîye’yê hebe ewê li hember wê şer bikin. Hiso amaje bi wê yekê jî kir ku hêzên kurd parastina civaka Sûriye’yê dikin û ew hêza hemû pêkhateyên li Sûriye’yê ne û ew li Sûriye’yê parastina mirovahiyê dikin. Hiso wiha berdewam kir; “Hêzên me li hember DAIŞ’ê serkeftinên mezin bidestxistin. Me DAIŞ ji Rojava’yê Kurdistanê derxist. Emê wê ji hemû xaka Sûriye’yê derxin.”

## Salih Muslîm bi Bogdonov re civiya

Hevserokê Giştî yê PYD’ê Salih Muslim bi Cihgirê Wezîrê Karên Derve yê Rusya’yê Mihail Bogdanov re li ser pirsgirêkên Sûriye û çareseriya wê hevdîtin pêk anî. Hevdîtin li avahiya Wezareta Karên Derve ya Rusya’yê pêk hat. Di hevdîtina ku nêzî 2 saetan domkir de, li ser pirsgirêkên Suriye’yê, çareserkirina wan, konferansa ku tê plankirin di demên pêş de bê lidarxistin hate rawestîn. Her wiha polîtîkayên Tirkiye’yê yên li herêma Ezazê jî hatin gotubêjkirin. Hevserokê PYD’ê Salih Muslim di derbarê hevdîtinê de agahî dan û destnîşankir ku wan li ser pirsgirêkên Suriye û çareserkirina wan bi awayekî berfireh nîqaş kiriye. Salih Muslim anî ziman ku wan di hevdîtinê de projeyên xwe yên çareseriyê careke din vegotine û bi erênî hatine pêşwazîkirin.

Her wiha Salih Muslim destnîşan kir ku di hevdîtinê de li ser plana Nûnerê Neteweyên Yekbûyî (NY) yê Suriye’yê Stephan Demistora ku tê plankirin di demên pêş de konferansek bê lidarxistin jî hatiye rawestîn û wiha got: “Gotin ku ew dixwazin Rêveberiya Xweseriya Demokratîk a Rojava jî tevlî vê konferansê bibe. Me jî diyar kir ku ev dê baş bibe û em dikarin wekî Rêveberiya Xweser tevlî konferansê bibin.”Muslim ragihand ku wan di derbarê polîtîkayên Tirkiye’yê yên li hemberî Rojava û bi taybetî jî hewldanên wê yên dawî li ser herêma Ezaz û Cerablusê jî nêrîn û nerazîbunên xwe parve kirine û Bogdanov jî piştgirî daye van. Muslim her wiha amaje bi wê yeke jî kir ku Bogdanov gotiye ku pêkhatina tiştekî wekî herêma ewlekariyê ewê neye qebûlkirin.

## Li Başûr ofîsên Rojava vedibin

Li hêla din Kantonên Rojavayê Kurdistanê bi YNK’ê re li hev kirine ku ofîsên nûneratiyên xwe li Başûrê Kurdistanê vekin. Li gor agahiyan, her sê kantonên Cezîre, Kobanê û Efrînê yên Rojava’yê Kurdistanê li gel dezgehên YNK’ê lihevkirine ku ofîsên nûneratiya kantonan li Silêmaniyê werin vekirin. Li gor agahiyan, dê ofîsên her sê kantonên Rojava di nîvê meha bê de li bajarê Silêmaniyê werin vekirin. Hat zanîn, bi mebesta encamdana karê pêwîst bo vekirina ofîsên kantonan, şandeke Kantona Cezîrê serdana Silêmaniyê kiriye.

Şanda Cezîrê ji her yek ji Serokê Desteya Derve ya Kantona Cezîrê Ebdulkerîm Omer û Alîkara Serokê Desteya Derve ya wê kantonê, Amîne Osê pêkhatiye. Alîkara Desteya Derve ya Kantona Cezîrê Amîne Osê eşkere kir ku ew niha di qonaxekê de ne ku pêwîst dike ew pêwendiyan ava bikin da ku li gor gotina wê "xweseriyên xwe bi hemû cîhanê bidin naskirin û di destpêkê de jî ofîsekê li Başûrê Kurdistanê vekin." Amîne Osê derbarê dema vekirina ofîsa nûneratiya kantonên Rojavayê Kurdistanê li Başûrê Kurdistanê de jî got, ew xwe amade dikin da ku di heyama navbera 15 heta 17’ê vê mehê ofîsên xwe vekin.

## Erîşên PYD ser bi ENKS’ê berdewam in

Li hêla din êrîş û bi serde girtinên Asayîşa PYD’ê ya ser partiyên siyasî yên Rojava’yê Kurdistanê jî berdewam dikin. Endamê Polîtbûroya Partiya Demokat a Kurdistana Sûriyê (PDKS) Mihemed Îsmail li ser êrîş û pêkûtiyên li ser ENKS’ê rawestiya û da zanîn ku PYD rê li ber wan digre da ku endam û xebatkarên ENKS’ê li Rojavayê Kurdistanê bisekinin. Her wiha Mihemed Îsmaîl amaje bi wê yekê jî kir ku heta niha wan dixwest li gel PYD’ê û TEV-DEM’ê bi rê kevin lê belê PYD’ê rê li ber vê yekê girtiye û ji bilî xwe hebûna tu kesî li Rojavayê Kurdistanê qebûl nake. Di berdewama axaftina xwe jî de Îsmail eşkere kir ku di 11’ê Tebaxê de avahiya Partiya Yekitî hatiye gulebarankirin û gef li wan hatiye xwarin. Îsmail amaje bi wê yekê jî kir ku PYD’ê siyaseta xwe li ser xelkê ferz dike û ji xelkê dixwaze ew bibin terefgîrê wê û jê re propagandayê bikin.

## ‘Pêşmergeyên Rojava amade ne’

Îsmail li ser derbasbûna Pêşmergeyên Rojavayê Kurdistanê jî rawestiya û da zanîn ku Pêşmergeyên Roj amadene derbasî Rojava binin û li hember êrîşan tevlî parastina welat bibin. Îsmail her wiha daxuyand ku PYD ji hevalbendiya gelek komên tûndrew ne aciz e lê belê ji hevalbendî û hevkariya ENKS’ê û Pêşmergeyên kurd aciz e û li gel wan kar dike. Îsmail wiha got: “Biraderên PYD’ê ji vê yekê aciz in û ew hevalbendiya rejimê û komên din qebûl dikin lê hevkariya bi me re qebûl nakin.”

Kevneserokê ENKS’ê Qasim Yusuf jî li ser derbasbûna Pêşmergeyên Roj got ku wan bi Peymana Duhokê li hev kiribû ku bi hevre parastina Rojavayê Kurdistanê bikin lê belê PYD’ê ew peyman nasnekir û li xalên peymanê xwedî derneket.



Romano verên yê kirmanckî

# Seba ziwanan giranîya romanê verênî


Nadire Güntaş Aldatmaz

Dinyaya edebîyatê kurdan de hurendîya romanî zaf muhîm a. Ziwanê kurdan de romano verên serra 1935 de, lehçeya kirdaskî de ameyo nuştene. Kirdaskî hem cografyade girse de hem zî welatanê bînan de yena qisey kerdene. No rî ra zî dahîna avêr şîya.

Bêguman romanê kurdan zî mîyanê edebîyatê kurdan de cayode muhîm der o. Edebîyatê kurdan zî jey miletê kurdan parçe bîyo. Peynîya nê parçebîyayîşî de mesafeyê girşî kewtê mavênê lehçeyan. No rî ra zî edebîyat, tayê lehçeyanê ma de tenêna avêr şîyo. Na mana de kirmanckî rind peyser menda. Romanê kirmanckî ancax serra 2000î de ameyo weşanayene. No durum qîymetê romanî senik nêkeno, eksê ci, keno zêde.

Seba herey kewtena edebîyatê ma yê nuştekî, sebebî zaf ê. Qedexeyê ziwanî, zindan kerdena roşnvîran, parçebîyayîşê miletî ûsn. Bindestîya ziwanî, bîyayîşê edebîyatê nuştekî rind kerdo zor. Hîkaye, şîîr û sanikî cayê de vinderê, roman nuştene, seba kirmanckî bê îmkan bîye. Wertê na bêîmkanîye de nuştişê romanode 536 rîpelî raştî zî qehremanîyade girse wazena. Hem hetê dewletîya ziwanî ra hem zî hetê belaya sereyî ra.

Deniz Gunduz, nuştoxê romanê verên yê kirmanckî yo. Deniz, hona ke cênco 24 serrên bîyo, no kitab nuşto. Beno ke rozê no ziwanê ma yo kan bixeleşîyo, bibo ziwanê perwerdeyî, eke henî bo, tede bara nê romanî zaf bena.

Ziwanê ma yo ke ziwanê zereyê çeyî (keyî) bî, bî ziwanê edebîyatî. Ziwano ke çinebîyaye bî, o ke eyb bî, o ke tayîne ra gore ziwanê serê koyan bî, o hên ame meydan ke êdî kes bese nêkeno ke heqa ey înkar bikêro.

Seba ma kirmancan, eve ziwanê xo wendiş sebebê bextewerîya ma yo.

**1. Milet û roman**

Ma ke edebîyatî de nîyada, vîneme ke edebîyat, bi nameyê miletan yeno vatene. Mavajî, edebîyatê almanan, edebîyatê îngilîzan, edebîyatê rûsan ûêb.

Ancî nîyadame ke vejîyayîşê romanî û miletbîyayîş ca-ca de kewtê têmîyan. Averşîyayîşê romanî zî miletê ke wayîrê dewlete yê û ê ke bêdewlet ê, ferqê xo esto. Bêguman, mileto ke wayîrê dewlete yo, edebîyatê înan beno berz, beno girs yeno ra dustê edebîyatê dinyaya moderne. Çike mileto ke dewleta xo esta, ziwanê xo azad o. Yewbîyayîşê perwerde û weşanayîşî esto. “Çinebîyayena dewlete û xoserbîyayena kurdan, qalê edebîyatê kurdan o milî kerdene fîna ra zor. (…) Miletê ke kurdî kerdê binê destê xo û zor kerdo, polîtîkaya înkarî ra heta bi otonomîyade tenge muamele kerdo.” (1)

Seke Haşim Ahmedzade halê romanê kurdan zaf rind tehlîl keno, no durum de, parçebîyayîşê kurdan behsê edebîyatê kurdan o milî kerdene rind keno zor. Çike çitur ke mi cor de zî vat, miletbîyayîş û roman, dewleta milî û roman, zîyade kewtê têmîyan.

Roşan Lezgîn

Moretti ra gore, hetê ra, dewleta milîye (ulus devlet) roman veto. Hetê ra zî romanî dewleta milîye veta. Noştoxo amerîkanij Ray Bradburyî ra gore zî roman, kulturê miletî cîgêreno û vezeno werte.

Romano verên yê Ewropa “Don Kîşot” (Don Quijote) serra 1605 de hetê Miguel De Saavedra Cervantesî ra ameyo nuştene. Romano verên yê tirkan “Taaşşuk-ı Talat ve Fitnat” serra 1872 de hetê Şemsedîn Samî ra ameyo nuştene. Romanê ma yo verên “Şivanê Kurd” lehçeya kirdaskî de serra 1935 de hetê Erebê Şemoyî ra ameyo nuştene. Çiqas ke nuştoxo kurd Ferhad Shakely seba romanê verên yê kurdkî serra 1960 dano zî bellî yo ke qesta xo romanê lehçeya sorankî yo. Shakely bi xo zî vano romanê ke Yewîya Sovyetan de weşanîyayê, na xebata xo de tever ra verdayê. Çike Şivanê Kurd (Şivanê Kurmanca) Yewîya Sovyetan de weşanîyayo.

Cayo ke tede miletê kurd ciwîyeno, ê cayan de zêde kirdasî yeno qiseykerdene. Cayo ke kurdkî qedexe nêbîyo, verê coy, ê cayan de metnê edebî vejîyayê werte. Mesela, kurdê ke Yewîya Sovyetan der ê, hetê ziwanî ra tenêna azad ê. Romanê verênî zî uca vejîyayê.

“Xêrza romananê welatî ra, averşîyayîşê romanê kurdan de bara dîyaspora zaf a. (…) Tim merdim zaneno ke averşîyayîşê edebîyatê kurdan de kurdê ke Armenîstan der ê, bara xo zaf a. (…)

Ma ke tarîxê edebîyatê kurda de nîyada, verê coy, edebîyato klasîk yê kurdan, bi alfabeya erebkî vejîno vernîya ma. Bêguman, merdim şikîno vajero ke edebîyatê kurdan o klasîk medresan ra vejîyayo. Medresan bi seserran jê mektebanê îlmî xizmete daya û şaîrê girşî nê medresan ra vejîyayê. Kurdkî ke seserra 15. de dekewte dinyaya edebîyatî, erebkî û fariskî welatanê muslumanan de ziwanê edebîyatî bî. Ma ke qalê şîîra kurdan a verêne kerd, gerek tayê kesanê zaf muhîman bîyarîme xo vîrî. Elî Herîrî, Melayê Cizîrî, Melayê Bateyî, Mele Perîşan, Feqîyê Teyran. Nê kesê muhîmê ke medresan de erebkî û fariskî wendo, unca zî şîîr û dîwanî bi kurdkî nuştê.”(2)

Mavênê edebîyatê klasîk û edebîyatê modernî yê kurdan zaf derg o. Wexto bêveng xeylê esto. Raverşîyayîşê edebîyatê modernî herey bîyo. Sebebê nê halî eyan o.

**a) Halê Kirmanckî**

Serranê hawtayan (1970) de qiseykerdişê kirmanckî eyb bî. Kirmanckî ziwanê dewe bî. Hên bibî ke dewijan bîle xo zor kerdenê ke bi tirkî qisey bikerê. Çitur ke merdim çeye ra vejîya, kincanê zereyê çeyeyî (keyeyî) xo ser a keno, vezeno, kincanê teverî dano xo ra, eynî hên bî. Kirmanckîya xo çeye de ca verdayênê û tever ra tirkî qisey kerdêne. Çarşî de, mekteb de, telefon de tirkî qisy kerdêne. Ê ke tirkî nêzanayêne, yînû bîle xo zor kerdêne ke telefon de tirkî qisey bikerê. Miletî hetê ra serm kerdêne, hetê ra zî tersayêne ke eve kirmanckî qisey bikero.

Serranê hawtayan de organîzasyonê marksîstî zaf bî. Yînû kî wastêne ke kes qalê ziwanê xo nêkero. Yînû ra gore, wextê serbestîya ziwanan şorişî ra tepîya yo. Înanê ke nîya vatênê, ê zî kirmancî bî. Qisey kerdena ziwanî her ke tepîya este, domanî nêmusay, kalan xo vîr ra kerd. Ziwanê teverî (ziwanê mektebî, yê çarşî, yê organîzasyonan…) tirkî bî. Dime ra zî radyo û televîzyonî kowtî zereyê çeyanê ma. Roze de nêm sate, radyoyê Erîwanî ra tever pêro tirkî bî. Yê Erîwanî zî kirdaskî bî. Qismêkê ma fehm nêkerdênê, unca zî gos dayênê. Melodîyê kilaman ma rê weş amênê. O zî dizdîya gos dayênê.

Çiqas ke ma derdê xo, ziwanê xo de tewr rind vatênê, unca kî eke yewî rê binusnêne, ebe tirkî nusnayêne.

Halê ma nîya bî. Ma tayîne rê xovîrrakerdîş zor bî. Ma xo zor kerdêne ke tayê çekuyan bîyarîme xo vîrî. Nuştene nêameyênê vîrê keşî.

O wext lehçeya kirdasî de çend kovarî vejîyayênê. Ê kî nême kirdasî, nême tirkî bî. Derbeyê 12 elule ra tepîya ê zî nêvejîyay. Kirdaskîya ke tenê jîl dayîbî, a zî birîya. Kirmanckî xora nêameybî ra xo.

Serrî ke vêrdî ra, miletî ziwanê xo terikna. Her keşî domananê xo de tirkî qisey kerd. Ziwanê dewe peyder pey xo vîr ra kerd. Hên bî ke, kokimê ke dewe der ê, hawtay, heştay serran der ê, bî ziwanê yînan. Dime ra zî dewî kerdî tol, vêsnay. Kes dewan de nêmend. Dewijî ke nêmendî, ziwanê yînan zî nêmend.


EDEBÎYATÊ KIRMANCKÎ RA NIMÛNEYÎ
(ZAZACA EDEBİYATINDAN ÖRNEKLER)
Amadekarî (Hazırlayanlar):
Prof. Dr. Kadri YILDIRIM
İbrahim BİNGÖL
Roşan LEZGÎN
Mardin Artuklu Üniversitesi




**b) Awe Raya Xo Dîye**

Unca kî rozê amê, no hal têser û têbin ra bî. Awe raya xo dîye. No ziwan de eserê edebî vejîyayî.

Edebîyat henî yo ke “cayê de, cayode dizdî ya, xerîbîye de, odayade serdina cemedîyayîye de, serê koyê de, mektebê de, hucreyê de, qawîşê de, qeweyê de, cayo ke merdim şikîno binuşno, ê cayan de qeleme cêno xo dest, kaxite cêno xo ver, çekuyê ke o ziwan de zaneno, derdê xo ê ziwanî de dano vatene. Ge-gane beno ke nînan ra tiway nêvejîno. Ge-gane zî nê nuşteyî benê eserê edebîyatî. Nê, zîyade benê şîîrî, ge-gane benê hîkaye. Hama ke nê nuşteyî bî roman, endî ê ziwanî ra hên rehet zewal nêbeno.”(3)

Raştî zî wertê na bêîmkanîye de edebîyatê ma raya xo kerde ra. Yew ziwanî de edebîyat viraştene, qeweta ê ziwanî musnena. Bi taybetî, ziwanê de roman nuştene, bi xo merhaleyade zaf muhîm a. “Çike roman, zîrveyê ziwanî yo, zîrveyê edebîyatî yo. Çike roman, zanayîş û şeklê ciwîyayîşê xelkî yo. Ziwano ke romanê xo esto, ê ziwanî vera qedexekerdişî de çeka xo sanaya xo mîye. Roman, verê ziwanî de kalxan o.

Fîlologî vanê, ewro rîyê hardî de nêjdîyê hîrê hazarî (3000) ziwanî estê. Mîyanê nê ziwanan de tenya edebîyatê hawtay û şeş (76) ziwanan esto. Ciwîyayena ziwanan de raya verêne, raya teke edebîyat o. Kurdkî zî nê ziwanan ra yew a… Dinya de ziwanê çin o ke jê kurdkî bê mekteb, bê estîtu, bê perwerde ûeb. wayîrê xo vejîyo, eseran bido. Belka zî xelko tek o ke wertê na bêkesîye û bêwayîrîye de edebîyatê xo honde avêr berdo.” (4)

**2. Romano verên**

Romano verên ê kirmanckî serra 2000î de Anqara de Weşanxaneyê VARTANî ra vejîyayo. Roman, 536 rîpelî yo. Nuştoxê romanî Deniz Gunduz o.

**a) Deniz Gunduz Kam o?**

“Deniz Gunduz, romannuştoxo verên yê kirmanckî (zazakî) yo. Çeleyê 1976î de dewa Gimgimî Canesera de maya xo ra bi. Hema ke hîrêserre bi, keyeyê înan bar kerd, şîy bi dewa Uskira. Wendegeyo verên Uskira de wend. Mîyanên zî na dewe de dest pêkerd la Tetwan de temam kerd. Wendişê lîse zî, Bidlîs de dest pêkerd, Îzmîr de temam kerd. 1994 de Anadolu Üniversitesi ya Eskîşehîrî de qismê Tarîxê Hunerî (Sanat Tarihi) de qeyda xo viraşte labelê wendişê xo temam nêkerd. 1996 de Îzmîr de temsîlkarîya Weşanxaneya Komalî kerde. Wexto ke no gure kerdêne, xo da xebata ziwanê kurdkî ser û dest pêkerd bi kirmanckî nuşt. Serra 2000î de romanê xo Kilama Pepûgî ke romano yewin yê kirmanckî yo, da weşanayîş. Serra 2003 de bi wasitayê Weqfa Kurdî ya Kulturî li Stokholmê Unîversîteya Upsala de yew termîn kirmanckî wende. Badê ke Swêd ra agêra, Îstanbul de Weşanxaneyê Vateyî awan kerd. Û êdî bi temamî xo da karê edebîyatî û weşangerîya kirmanckî ser. Kovara Vateyî ke Swêd de hetê Grûba Xebate ya Vateyî ra amade bena, Tirkîya de dano çape ro û vila keno. Heto bîn ra Weşanxaneyê Vateyî de kitaban çap keno.

Eserê eyê ke hetanî nika weşanîyayê:

1) Kilama Pepûgî (roman), Vartan, Anqara, 2000

2) Hîkayeyê Koyê Bîngolî (hîkaye), Weşanxaneyê Vateyî, Îstanbul, 2004

3) Kırmancca/Zazaca Dil Dersleri (gramer), Weşanxaneyê Vateyî, Îstanbul, 2006

4) Deniz Gunduz, Soro (roman), Weşanxaneyê Vateyî, Îstanbul, 2010” (5)

**c) Edebîyatê Denîz Gûndûzî**

“Deniz, edebîyatê xo de zaf asan û sade qisey keno, hîra-hîra, derg û dila qisey keno. Ziwanêko dewlemend û goştin xebitneno. (…) Sînorê xeyalanê ey de qet zordayîş çin o, yanî, qet zor nêdano xo.” (6)


Deniz Gündüz

Çiqas ke standardbîyayîşê kirmanckî temam nêbîyo, her kes goreyê mintiqaya xo qisey keno û nuşneno, hên zanen ke ziwanê Denizî her keşî gore aracax (yeno famkerdiş) o.

“Dinyaya edebîyatê Denizî, mekanê bîyîşan derûdorê Koyê Bîngolî, Koyê Şerefdînî yê; dewa Uskira, Civarka, Canesera; Dereyê Sorbelaxî, Girê Boxayî bi deşte û zozananê xo, bi tap û kend û kendalanê xo, bi mal û pes û birrê xo, bi qereqol û mekteb û bereqayê rijyayeyî ke erdlerzê şeşt û şeşî ra mendê. Heme hîkayan de nê mekanî yenê verê çimê merdimî. Û îllahîm zî vewre, vewra welatê Serhedî; vayo ke hêç beno, tozike, puk, pukeleke…” (7)

Rastî zî merdim hên hîs keno. Waxtê wendişê romanî de merdim cayê xo yê raştkênî terikneno sono serê koyê Bîngolî, sono wertê gul û vilikan. Boya vaş û vilikan sereyê merdimî çerexnena, çitur ke vayê zimistanî rîyê merdimî vêsneno, halê miletê ma, feqîrîye, cahîlîye û bêkeşîya miletî zî zereyê merdimî vêsnena.

“Edebîyatê Denizî de dej û mîzah têmîyan de yê. Seke wisarî gama ke vewre dest pêkena vilişêna, sîyayîye vejêna meydan, derûdor de mîyanê belekanê vewre de çayîr û çîmen, gul û gulbizêkî ver kenê ci zergûn benê. Keweyî, sîyayî û sipîyî têmîyan de asenê, bi no qayde, her hîkaye de hema vajêne ke her qiseykerdiş de gama ke jan, dej, êş û elem, bêçareyî û cehaletîya şarê ma nawneno, hetêk ra zî bi hawayêko tebîî, zaf asan, mîzahî sey derûyê nê dejê xorînî, sey yew şerbetî pêşkêş keno. (…)

Eke bi kilmîye debîyatê ma de cayê Deniz Gunduzî û rolê ey mi ra bipersî, ez vana ke, edebîyatê tirkî de cayê Yaşar Kemalî û rolê ey çi yo, yê Deniz Gunduzî zî o yo. Çunke uslûbê qiseykerdişê edebîyatê Denizî, hawayê şuxulnayîşê ziwanî, heta bi mekan zî, belê, zaf hetan ra edebîyatê ey maneno edebîyatê Yaşar Kemalî.” (8)

Her çî ra avêr, no ziwan de edebîyat bi xo çîyode zaf girs o. Seba nuştena romanode kirmanckî gerek taqetade pîle, ziwanzanoxîyade hîraye û ziwanode dewletî merdimî de estbo.

Hên asen o ke Deniz Gunduz wayîrê nê mezîyetan pêroyîne yo. Çike o, çi ke wazeno kitabanê xo de vajero, zaf rind vato. Bi ziwanê xo yo zelal û germ û dewletî û raştkên zereyê merdimî vêsneno, lerzneno, merdimî hurêndîya xo ra urzneno ra, beno serê koyanê welatî, wertê boya kulîlikan.

BasNûçe 17 - 23 Tebax 2015



## Dr. Ebdulkerîm Ahmed:

# Kurdistan defakto serbixwe ye!

Salih Batırhan – Kalê Badî

Di vê pêvajoya ku li Rojhilata navîn şer û qeyraneke mezin rû daye de, li gel hemû êş û azar û tevlîheviyan, bêguman ji bo Kurdan derfetên bêhempa peyda bûne. Ev qeyrana ku li ser bidesxistina sûda ji neftê rû daye, bi xwe re têkbirina sînorên sedsalane û ji nû ve avakirina hevsengiyên hevparkirina berjewendiyan jî tîne. Pisporê Pêwendiyên Navneteweyî û Gerînendeyê Giştî yê Kanala Spêda Dr. Ebdulkerîm Ahmed egeriya ku Rojava bi Herêma Kurdistanê ve bê grêdan û nefta Kurdistanê bi ser Rojava ve arasteyî Derya Spî bibe pêkan dibîne û vê yekê bi têkbirina DAIŞ'ê ve pêwendîdar dike. Me di derbarê vê babetê, pêwendiyên Rêveberiya Herêma Kurdistanê (RHK) yên bi Enqere, Tehran, Bexda re, dîplomasiya wê ya navneteweyî û pirsgirêkên wê yên navxweyî de pirsan ji Ebdulkerîm Ahmed pirs û wî bersivand.

**Dema Serokê RHK'ê serdanên dîplomatîk dike, ji alî payebilindên dewletan ve wek Serokê dewletekê tê pêşwazîkirin. Sedemê vê grîngîdayîna Barzanî çi ye?**

Herêma Kurdistanê ji sala 1991'an ve bi şêweyeke resmî nebe jî wek defakto ta radeyekê xwedî roleke serbixwe ye. Di vê babetê de du xalên grîng hene. Yek: Em dikarin bêjin niha Herêma Kurdistanê dewleteke serbixwe ye; Lewre li gor peyman û hikûka navneteweyî û li gor destûra Iraqê ne serbixwe be jî, muameleya ku li herêmê û di qada navneteweyî de dibîne, muameleya dewleteke serbixwe ye. Xala duyem jî ev e: Wekî min got ji 1991'an bi şûn ve xwe bi xwe birêve dibe. Nêzîkî 25 slane bi her cih û navçe û bajarên Herêma Kurdistanê rêveberiya Kurdistanê serdest e. Ev 25 salên xwe birêve birinê tecrûbeyek û peyda kirî ye û ev tecrûbe di têkiliyên navneteweyî de tê dîtin. Di vê maweya 25 salan de di warê binesaziya dezgehî, aborî, siyasî civakî û çandî de geşedandiye û zemîneke tekûz ya rêvebirinê afirandiye. Desthilatiya rêveberiya xwe di asteke bilind de parastiye û vî sînorê desthilatiya xwe wek wêneyekî zelal şanî hemû dinyayê jî daye. Ji alî din ve Herêma Kurdistanê bi nefta xwe jî vê rola xwe xurttir kirî ye. Çi Amerîka, çi Ewropa, hemû welatên ku pêwîstiya wan bi sûdgirtina ji nefta Kurdistanê heye û çavên wan li qezenca neftê ye grîngiyeke mezin dane Herêma Kurdistanê û xwestine ku Herêma Kurdistanê qewîtir, xurttir û aramtir bibe. Erê dewleteke serbixwe nîne, lê belê bi pêgeh, grîngî û rola xwe ji gellek welatên din ên dinyayê bêtir hurmetê dibîne. Ev tecrûbeya ku di van 25 salan de hatiye ezmûnkirin pir granbûha ye û Herêma Kurdistanê di vê ezmûnê de rolê xwe baş pêk anî ye. Bi cîranên xwe re, bi welatên din ên ku rêgeha siyaseta dinyayê diyar dikin û bi rêxistinên navneteweyî re dîplomasiyeke serkeftî meşandiye giraniya xwe bi wan ragihandiye. Hemû ev xalên ku min got bûne sedem ku wek Serokê RHK'ê Birêz Mesûd Barzanî wek serokê welatekê bê pêşwazîkirin.



**Amaje bi vê yekê jî tê kirin ku ji ber RHK'ê muameleyeke demokratîk û aştiyane û bi tolerans li gel pêkhateyên li Herêma Kurdistanê dike, welatên Ewropa û Amerîka li gel wê dîplomasî dikin û vê grîngiyê nîşan didin. Li ser vê yekê tu yê çi bêjî?**

Rast e, ev xal pir grîng e. Lê belê xaleke din a ku vê encamê pêkan dike jî destûra Iraqê ye. Di destûra Iraqê de xalek ku amaje pê tê kirin de ji bo Herêma Kurdistanê derfetên konsolyatê pêkan dike. Di destûrê de Herêma Kurdistanê wek hikûmeteke federal grîng tê dîtin. Hemû ev tişt rêxweşker in ji bo vî wêneyê xweşbîn.






**Ji 1'ê Tîrmehê heta niha Hikûmeta Herêma Kurdistanê nefta xwe nade Şirîkeya fermî ya Iraqê SOMO'yê. Ev yek dikare bandoreke çawa li ser pêwendiyên RHK'ê û dewletên navneteweyî bike?**

Di vê babetê de sedema herî grîng ew bû ku rêveberiya Bexdayê şertên peymana ku li ser şandina neftê bi RHK'ê re kiribû bi cih nehanî ye. Ev bi cihnehanîna van şertên vê peymanê bû sedem ku Hikûmeta Herêma Kurdistanê biryareke wiha bistîne û nefta xwe bi serê xwe bifroşe. Bê guman bi serê xwe frotina neft ji bo berjewendiyên Herêma Kurdistanê derfetên nû û mezin pêkan dike. Di vê derê de Tirkiye xwedî grîngiyeke mezin e ku nefta Kurdistanê bigihîne Ewropa û dinyayê. Pêwendiyên baş ên bi Tirkiyeyê re vê biryarê grîngtir dike.

**Îran her bi destwerdana Herêma Kurdistanê aşîna bûye, lê di van demên dawî de Îran bi peymanên neftê yên li gel Herêma Kurdistanê tê rojevê. Em dikarin vê helwesta Îranê çawa bixwînin?**

Belê. Îran jî ji bo berjewendiyên xwe eleqeyeke mezin şanî herêmê dide. Bi taybet li Silêmanî û heta radeyekê li Kerkûk li dû berjewendiyên xwe ye. Her wiha şirîkeyeke Çînî li Kerkûkê karê derhêmana neftê dike û ev şirîke bi rêya Îranê hatiye Herêma Kurdistanê. Îranê jî li gel vê hevpeymaniya 5+1 peyman mohr kirî ye. Ev peyman jî grîng e. Ji ber vê yekê Îran ji bo bi Herêma Kurdistanê re bêtir kar bike di nav hewldanan de ye.

**Egerî heye ku bi Herêma Kurdistanê re peymanan mohr bike?**

Piştî mohrkirina peymana li gel hevpeymaniya 5+1 Îran dixwaze ku nefta xwe bifroşe. Ji ber vê yekê dixwaze dergehên din ên sînor veke. Lê di vê peymanê de Amerîka şert daniye ber Îran ku ew pê razî be Îran nefta xwe bifroşe.

**Li ser geşedandina dîplomasiya navneteweyî berxwedana Pêşmerge heta niha bandorê li Herêma Kurdistanê kirî ye?**

Bêguman. Ji ber ku li dij hêzeke terorîst a DAIŞ şer dike, gellek welat têne li gel Herêma Kurdistanê pêwendiyan durust dikin. Bêguman navê Pêşmerge û berxwedana Pêşmerge bandoreke baş kir dîplomasiya Herêmê geştir bibe.

**Dema ku tu wêneyê rewşa Kurdistanê temaşe dikî, li gor te serxwebûn kêngê tê? Hevsengiya navneteweyî ji bo Kurdistaneke serbixwe amade ye yan na?**

Hêvîdariya serxwebûnê ya ji welatên din helwesteke na durust e. Tu kes serxwebûnê nade kurdan. Divê em xwe serbixwe bikin. Divê Herêma Kurdistanê ji bo serxwebûnê xebatan bike û serxwebûna xwe ragihîne. Bi raya min ji bo serxwebûnê niha zemîneke baş pêkan e. Di rewşa navxweyî de pirsgirêkên me hene.Eger em li Herêma Kurdistanê yekîtiya xwe saz bikin ez dikarim bêjim ku wê serxwebûna Kurdistanê jî nêzîktir bibe. Lê belê di zemîna navxweyî de hêzên siyasî yên Kurdistan gotina xwe nekin yek, du gotinên cuda hebin ku mebesta min ji rewşa niha ya ku PDK li aliyekî ye û YNK û Tevgera Goran li aliyekî ye; Heta ev dualîtî çareser nebe, ragihandina serxwebûna Kurdistanê paş de dikeve û taloq dibe. Lê belê eger di asta navxweyî de zemînek saz bibe wê gavê pêwîstiya me bi hevsengiya navnetweyî namîne. Lê mixabin di asta navxweyî de em amade nînin û pirsgirêka me ya sereke jî ev e.

**RHK'ê li gel kîjan dewlet û dezgehên navnetewî bêtir pêwendîdar e?**

Pêwendiyên RHK'ê li gel Tirkiye û Îranê baş e. Lê belê ku em herdûyan pergî hev bikin, ji ber berjewendiyên hevbeş ên li ser neftê,pêwendiyên li gel Tirkiyeyê baştir û zêdetir in. Li gel Îranê jî pêwendiyên bazirganî baş e; Çimku pêwîstiya Herêma Kurdistanê bi her cûre pêwendiyên her welatî heye. Di warê bazirganî û berjewendiyên hevbeş, pêwîstiya wê bi Îranê jî heye û pêwîstiya wê bi Tirkiyeyê jî heye. Her welatek bi şêweyeke cûda pêwendîdar e bi Herêma Kurdistanê; Lê belê wek pêwendiyên siyasî, pêwendiyên bi Tirkiyeyê re baştir û xurttir in ji yên bi Îranê re.

**Li gel welatên Ewropa çawa nin?**

Welatên Ewropa ji ber ku dûrtir in, bi wêneyekî din nêzîkî Herêma Kurdistanê dibin. Amerîka bi ser şirîkeyên xwe yen neftê ve pêwendîdariyeke baş li gel Herêma Kurdistanê dimeşîne. Bi welatên Ewropa re jî pêwendî baş in, lê belê ne di wê astê de ne ku di babeta serxwebûnê de piştgiriya Herêma Kurdistanê bikin. Divê ji bîra me neçe ku siyaset berjewendî ye û eger berjewendiya welatên Ewropa di Herêma Kurdistanê de tune be, tenê kurdbûn têra piştgirîdayîna serxwebûnê nake.

**Di qonaxeke ku Kurdistan di pêvajoya ragihandina serxwebûnê de bû DAIŞ'ê êrîşî Kurdistanê kir. Ji bo çi?**

DAIŞ dijberê kurd, ereb, şîa û sunne ye. DAIŞ, rêxisstineke ku dijayetiya hemû van hêmanan e û kurd jî yek ji van hêmanan e û ji ber ve yekê DAIŞ êrîş kir. Armanca DAIŞ'ê avakirina dewleteke li ser esasê xwe ye. Ji ber vê yekê hemû welatên din dijî xwe dibîne.

**RHK'ê çawa dikare bi awayekî qurs dîplomasiya xwe bimeşîne?**

Pêwîstiya RHK'ê bi hêzên Pêşmerge û xurtkirina wan heye. Pêwîstiya Pêşmerge bi çek û teqemenî heye. Ji alî din ve pêwîstiya RHK'ê bi piştgiriya hêzên navneteweyî heye û ji ber ku hêzên navneteweyî jî li dij DAIŞ'ê piştevaniya RHK'ê dikin ev derfetên baş diafirîne. Her wiha divê welatên herêmê jî piştgiriya RHK'ê bikin. Ger ku ev yek pêk bên, RHK'ê di warê dîplomasiyê de dikare xwe xurt bike û serxwebûna xwe ragihîne.

**Di analîzên siyasî de tê gotin ku egerî heye piştî têkbirina DAIŞ'ê, RHK'ê bibe armanca milîşeyên şîa yên Heşdî Şabî. Tu vê egeriyê çawa dinirxînî?**

Ji ber ku Heşdî Şabî ji berê ve li herêmê hebû, ev egeriyeke lawaz e. Lê belê eger DAIŞ, bi destê Heşdî Şabî têk biçe, ev yek dikare rewşê awarte bike û vê egeriyê xurtir bike. Eger Pêşmerge beşdarî operasyona rizgarkirina Mûsilê û navçeyên din bibe, wê gavê Heşdî Şabî nikare li vê herêmê xurt bibe û ev egerî pir lawaz dibe. Bi kurtasî; Eger li herêmê Pêşmerge bi hêz be, Heşdî Şabî jî nikare li herêmê bibe xwedî grîngiyekê. Bi kurtasî siberoja Heşdî Şabî di destê Pêşmerge de ye.

**Di vê pêvajoya ku qeyrana aborî heye û li ser şêweyê hilbijartina Serokê Herêmê nîqaşên ku dibin sedemê qeyrana siyasî jî têne kirin de, bi raya te pêwîstiya RHK'ê bi dirêjkirina maweyê serokatiya Birêz Mesûd Barzanî heye yan na?**

Bi baweriya min ev qeyrana siyasî dikare bi gotûbêjê bê çareserkirin. Ev pirsgirêkeke grîng e; Çimku di 20'ê mehê de maweya serokatiya Serokê RHK'ê Birêz Mesûd Barzanî diqede û divê ev pirsgirêk bê çareserkirin. Pirsgirêkeke din jî ev e ku di yasaya dirêjkirina maweya serokatiyê de hatiye nivîsandin ku 'Ev yasa careke din nayê nûkirin' û ev yek pirsgirêkê grîfttir dike, lewre di warê yasayî de jî pirsgirêkeke ku divê bê çareserkirin heye. Lê belê, bêguman Herêma Kurdistanê di rewşeke awarte de ye û pêwîstî bi wê yekê heye ku ev kêşe bêne gotûbêjkirin û çareserkirin. Yanî ev mesele bi razîbûna aliyên siyasî ya dirêjkirina maweya serokatiya Birêz Barzanî çareser nabe û divê ew pirsgirêka yasayî jî bê çareserkirin. Ez dixwazêm vê yekê bêjim ku ev pêşnûmayasaya ku YNK'ê pêşkêşî parlamenê kirî ye ji bo jinûve dirêjkirina serokatiya Barzanî jî derfetan diafirîne; Çimku bi pesendkirina vê yasayê erkê hilbijartina serokatiya herêmê radestî parlamenê dibe û ev yek yasaya bu me qala wê kir û pêşî li jinûve hilbijartina Barzanî digire betal dike. Bi vî awayî egeriya ku Barzanî ji nû ve, lê belê ji alî parlamen ve bê hilbijartin dertê holê. Lê dîsa jî ya pêwîst helwesta partiyên siyasî ye. Ew dikarin çareserkirina vê pirsgirêkê di parlamanê de pêkan bikin û di warê siyasî de Herêma Kurdistanê ber bi aramiyê ve bibin.

**Niha tu pêwendiyên Hewlêr û Bexda'yê nemane. Gelo egerî heye ku pêwendî ji nû ve bêne sazkirin?**

Heta helwesta Bexdayê bi vê şêweyê be wê Hewlêr û Bexda ji hevûdin dûrtir bibin. Bexda di qada dewletî û desthilatiya xwe de şkesteke mezin xwariye. Ji ber vê yekê ger ku Bexda ji vê helwesta xwe neyê xwarê, wê pirsgirêkên di navbera wê û Hewlêrê de mezintir û wê çareserkirina wan jî zehmettir bibe.

**Tê gotin ku Elmanya û hin welatên din ên Ewrpa dixwazin ku Rojava jî bi Herêma Kurdistanê ve bê grêdan û nefta wê bi ser Rojava ve arasteyê Ewropayê bikin. Hun vê angaştê çawa dinirxînî?**

Ragihandina Kantonan bi serê xwe xala yekem e ku dikare nefta Kurdistanê bi ser vê xetê ve arasteyî Ewropa bibe. Ji ber vê yekê egerî heye ku ev rêgeh bê durustkirin. Eger li Rojava DAIŞ bê têkşikandin, egeriyeke mezin pêkan dibe ku neft bi ser Kantonan ve bê arastekirin.

Pira Anadol û Kurdistanê

# GURGÛM

**Li heremê dîroka cîhê herî kevn ku bargheha rûniştinê bûye, diçe dema paleolîtîk, yanê 4 hezar sal berî zayînê. Di şikeftên nêzî Gundê Dongelê de bermayiyên vê demê hatine dîtin.**



**Welat Baz**

Bajarê Gurgûm ango Mereş, di tixûbê Kurdistan û Anatolyê de wek pirekî ye. Kurdistan û Anatolya li Gurgûmê gihîştine hev. Gurgûm, li rojavayê başûrê Kurdistan, di nav hêlîlarên bakûr ê 27 û 38 û di nav hêlîpanên rojhilat ê 36 û 37 de cîh digre.

**Erdnîgar**

Pîvana xaka Mereşê 14 hezar û 327 km² ye. Erdîma bajêr ji % 59,7 ji çiyayan, % 16,3 ji deştan û % 24,0 5 jî ji platoyan pêk tê. Di xaka Gurgûmê de noqta herî bilind Çiyayê Nûrhaq e û 3 hezar û 81 metre ye. Çiyayên Gurgûmê ê din jî evin: Çiyayê Engîzek (2815m), Çiyayê Axir (2301m), Çiyayê Berit (3014m), Çiyayê Bînboxe, Çiyayê Xenî, Çiyayê Qoç û Çiyayê Qaman.

**Deşt**

Ji xaka bajêr ji % 40 deşt û plato ne. Bilindbûna van platoyan heta 2000 m bilindin. Deşt û mexerên Gurgûmê wek hemû deverên Kurdistanê ji bo kiştûkal û lawirvaniyê bixêrûbêre. Li axa bajêr Deşta Elbistanê, Deşta Ceyhanê, Deşta Mereşê, Deşta Goksûnê, Deşta Avaspî û çend deştên bi navê Narlî, Andirîn, Avşîn û Mizmilî jî hene.

Li rêzeçiyayên Torosan Deşta Elbîstanê a herî mezin e. Dirêjiya vê deştê 50 km û firehî jî 20 km ye. Deşt di navbera çiyayên Nûrhaq, Engîzek û Bînboxa de ye. Dîsa Deşta Mereşê 40 km dirêj û 20 km jî fireh e. Deşt li başûrê bajar e. Ji zêwiyên bajêr berhemên wek; genim, ceh, nîsk, nok, pembû, îsot, silqa şekir û gelek cûrên fêkiyan tê hilberîn. Herwiha lawirvanî jî gelek pêş de çûye û bi milyonan lawirên biçûk û mezin Mereşê kirine wek nawenda goştê teze. Gelîyên Ceyhan û Aqsû jî li herêmê geliyên mezinên.

**Çem**

Xaka Gurgûmê ji alî avên şîrîn ve dewlemend e. Çemên Ceyhan û Goksûn û Avaspî avên herî mezinin. Ev çem ji Kurdistanê dizên û ber bi Derya Spî ve diherikin. Dîsa çemên wek Sarsap, Çataxan, Soxutlî, Xurman, Suhûl û Avarijû zêwiyên Gurgûmê avdidin. Li ser çemên Mereşê 4 bendavên mezin hatine çêkirin. Li ser Cemê Ceyhanê li keviya Çiyayê Engîzek Bendava Menzelet, li nêzî Elbistanê Bendava Qendîl, li ser Goksûnê, Adatepe û li nêzî Bazarcixê jî Bendava Qertelqaya hatine avakirin. Bajarê Gurgûmê ji alî erdnîgar û xweza xwe ve, devereke xweşik û dewlemend e. Li nawend û navçeyan gelek deverên geştê û germav hene ku her sal ji alî bi hezaran turistan ve tên ziyaret kirin. Di nav van deveran de Şikeftên Dongele, Daristanên Çinar, Çamlix, Tekîr, Firnîz û germavên Cela û Zeytûnê navdayîne.

**Sanayî**

Axa Gurgûmê ji alî madenên binerdê ve dewlemend e. Wek mînak di nav li Elbîstan û Avşînê sê milyar û nîv ton rezervên lînyît hene. Dewletê ji bo pêdiviyên enerjiya sanayiyê, ev çavkaniyên lînyîtê bikaranî û di sala 1973an de Santrala Termîk a Avşînê avakir. Ev santral, li Tirkiyê di warê xwe de tesîsa herî mezin e. Di axa bajêr de, li nêzî Navça Kurdoxlî barît û li nêzî Elbîstanê jî hesin tê derxistin. Dîsa li herêmê ji binê axê, lînyît, boksît û manganez jî tê derxistin.

**Rêvebirî**

Gurgûm, ji bakûr ve cîranê Sêwaz û Qeyserî, ji rojava ve cîranê Edenê, ji başûr ve cîranê Dîlokê, ji rojhilat ve jî cîranê Meletî û Semsûrê ye. Bajêr li gor pergala rêvebiriyê parêzgeh e. Bi navên; Elbîstan, Avşîn, Bazarcix, Çaxlayancerîd, Nûrheq, Ekînozu, Goksûn, Kurdoxlî û Andirîn neh navçe û 506 gund û mezra bi Gurgûmê ve girêdayî ne. Nifûsa Mereşê bi giştî li seriya milyoneneki ye. Ji nîvî zêdetirê nifûsa Gurgûmê kurd in. Kurdên deverê bi piranî ji Elewî ne û bi Zarava Kurmancî diaxifin. Kurd bi girranî li bakûrê bajêr, tirkmen jî li rojavayê bajêr dijîn.

**Nav**

Di dîroka niviskî de cara yekem, navê Gurgûmê di çavkaniyê Asûrî de derbas dibin. Li gor van çavkaniyan, navê bajêr wê demê 'Markasî', navê dewleta ku Hîtîtiyan li heremê avakiribûn jî 'Gurgûm' bû. Heta dema ku Romayiyan Kurdistanê bidestxistin navê bajêr wek 'Markasî' ma. Piştî vê, Împaratorê Romayî Kaligula, navê bajêr wek 'Germanicia' guherand.

Heta ku Arteşa Ereb hat heremê, navê bajêr wiha ma. Piştî Ereban, navê heremê bû 'Mar'aş'. 'Mar'aş' bi Erebî tê wate ya 'Cihê Lerzê'. Wê demê ji ber ku li heremê çeltûk, yanê birinc dihat çandin nexweşiya tayê, yanê sitma hebû. Kesên ku bi taya sitmayê diketin, laşê wan dilerizî. Tê hezrkirin ku Ereban vî navî ji ber vê yekê dabe bajêr. Gurgûm piştî Ereban jî, ku ji alî Bîzansiyan ve hat dagirkirin. Di dema Bîzansiyan de pêşiyê wek 'Marasiyon', paşê dîsa wek 'Maraş' hat binavkirin.

Bajêr di nav kurdan de niha wek 'Gurgûm' an jî Mereş, di nav Tirkan de jî wek 'Kahramanmaraş' tê binavkirin. Efsana ku Gerok Ewliya Çelebî di 'Seyahetnameya' xwe de li ser navê Mereşê dibêje balkêşe. Li gor ku Ewliya Çelebi neqildike, Mereş di demên kevn de bajarê Siltan Dehhaq bûye. Dehaq marên ser milên xwe bi laşên bajariyan ve xwedî kiriye. Ji ber vê zilmê, bajariyan bi serkeşiya Hesinkar Kawe, Siltan Dehhaq kuştine. Ji ber ku însanên vî bajarî ji maran re bûne xwarin, navê bajêr, wek 'Mar i İş', yanê xwarina maran maye û paşê jî bûye ,Mereş'.

**Dîrok**

Cîhê bajêr jî wek navê bajêr gelek car guheriye. Bajarê antîk ku li başûrê rojhilatê bajêr hatibû damezirandin, di dema Romayiyan de barkir keviyên Çemê Avareş. Di dema navîn de pêşiyê herema bi navê Raban, paşê jî herema Kevirzêr bû navenda bajêr. Herema Kevirzêr di erdhejekî de xerabû. Rûniştvanan malên xwe barkirin û çûn herema Mereşa Reş. Nawenda bajêr a îroîn jî di dema mîrnîşîna Zulqadiriyan de hat damezirandin û herwiha ma.

Li heremê dîroka cîhê herî kevn ku bargheha rûniştinê bûye, diçe dema paleolîtîk, yanê 4 hezar sal berî zayînê. Di şikeftên nêzî Gundê Dongelê de bermayiyên vê demê hatine dîtin.

Piştî ku Împaratoriya Hîtîtiyan belavbû û li Kurdistan û Anatolya dewletên sîteyan yanê ê bajaran derketin holê, li vê heremê jî dewleta Gurgûm hat damezirandin. Nawenda Gurgûmê Bajarê Markasî bû. Ew dewleta biçûk di nav Asûrî û Uratuyan de dest guhert. Gurgûm b.z di sala 612an de ji alî bavûkalên kurdan, yanê ji alî Medan ve hat bidestxistin. Piştî desthilatiya Medan a sedûpêncî salan, Persî ketin Gurgûmê û li heremê bi navê Kapadokya dewletekî otonom hat damezirandin.

Artêşa Îskender b.z di salên sêsedî de hat heremê û tevî Gurgûmê, Kurdistanê jî dagirkir. Dethilatiya Mekedonî, Romayî û Bîzansiyan li Gurgûmê heta salên p.z 1100an domkir. Di vê pêvajoyê de bajêr di sala 632'an de ji alî Artêşa Ereban ve û çend car jî, ji alî Sasaniyên Îranî ve hat dagirkirin. Di sedsala 1100an de Selçûqî hatin heremê. Wê demê li Kurdistanê dema mîrantiyan bû. Li Gurgûmê jî malbata Zulkaqiriyan mîrantiyekî avakiribûn. Bajar di sala 1521'an de di dema Yawûz de ket destê Osmaniyan û bi navê Eyaleta Zulqadiriye hat birêvebirin. Siltan Evdilezîz di sala 1867'an de Gurgûmê wek sancaxekî, bi parêzgeha Helebê ve girê da. Bajêr piştî damezirandina komara tirk jî, wek parêzgeh hat qebûlkirin.

Piştî Şerê Cîhanê ê Yekem împaratoriya Osmanî têk çû. Herema Mereş, ku ji alî Awrûpiyan ve wek Qilîkya dihat binavkirin, pêşî ji alî Îngîlîzan, paşê jî, ji alî frensiyan ve hat dagirkirin. Di dema dagirê de kurdên Gurgûmê, bi fîta Kemalîstan di sala 1920'an de li dijî Frensiyan şer kirin û wan ji bajêr avêtin. Bi taybetî, li Bazarcix, Kurdoxlî û li nawenda Gurgûmê di nav dagirker û kurdan de şerên dijwar derketin. Li ser vê helwesta Mereşiyan, di sala 1973'an de Meclîsa Tirk, paya 'qehremaniyê' da bajêr û navê Mereşê wek 'Kahramanmaraş' hat guhertin.

**Qira Ermeniyan**

Di pêvajoya şer de, İttihat û Terakki di sala 1915'an de li dijî Ermenî û Suryaniyan fermana qirkirinê da. Di van deman de li gor salnameyên Osmanî, nisûfa Mereşê 150 hezar e. Ji wan jî 27 hezar kes Ermenî ne. Ermenî û Suryaniyên Gurgûmê, bi taybeti li Nawenda Mereşê û xopana Zeytûnê bicîh bûne. Di encam de Dewleta Osmanî, Ermeniyên Gurgûmê temamen ji heremê ajot û bi hezaran kes kuşt. Piştî damezrandina Komara Tirk, ku wê demê li Mereşê hijmara tirkmenan gelek kêm bû, macirên Misluman ê Bulgarîstanê û Çerkezên Qasqasan li nawenda bajêr û li navçên wek Andirin, Goksûn, Turkoxlî û Bazarcixê bicîhkirin. Dîsa tirkmenên Çiyayê Axir, piştî qira Ermeniyan li nawenda bajêr hatin bicîh kirin. Dewleta Osmanî di demên kevn de jî ji bo, li bajêr hijmara Elewiyan daxînin, ji Ruha û ji Bazîdê gelek kurd û Erebên Sunî sirgûnê heremê kiribûn.

Li Tirkiyê piştî ku di salên 1940'an de ku 'Zagona Tunceli' ango 'Zagona İskana Mecbûrî' hat îlankirin, rejimê xwest li Gurgûmê nifûsa kurdan kêm bike. Bi vî armancî gelek rêbazên taybetî bikar anîn. Yek ji van rêbazan valakirina Gurgûmê bû. Bi vî awayî bi sedan malbat teşwîkê koçberiya Ewropa kirin. Ji aliyekî din ve jî di nav Elewî û Suniyan de nakokiyên mezhebî derxistin. Qetlîama Elewiyên kurd a sala 1979'an jî wek perçeyekî vê pîlanê hatibû lidarxistin.



Herçiqas siyaseta rejimê dor li geşbûna welatparêziyê girtibû jî, li Mereşê hewldanên Kurdayetiyê jî hebûn. Wek mînak, di sala 1958'an de ku 49 welatparêzên kurd ji alî dadgehan ve hatin girtin, Ökkeş Karadağê Bazarcixê jî di nav wan de bû. Piştî salên 1970'an wek hemû Kurdistanê, li Mereşê jî pêla çepgir û welatparêz destpêkir. Rejimê di heman demî de dijberê vê pêlê, nîjadperestên tirk û oldarên paşverû derxist sehnê.

**Qetlîama Elewiyan**

Di vê pêvajoyê de, qetlîama 1978'an lidarket. Di 23 Kanûna 1978'an de li nawenda Mereşê bi sedan nîjadperest êrişê taxên kurdan kirin. Di nava sê rojan de, li taxên, Yörükselim, Seritepe, Karamaraş û Yeni Mahale, pirên wan jin û zarok û pîr, 111 kurd hatin kuştin. Dema bûyeran polîs û leşkerên li bajêr jî alîkariya mêrkujan dikirin. Piştî vê bûyerê, ji % 80 kurdên bajêr koçkirin û paşê jî li Kurdistanê rêvebiriya leşkerî hat îlankirin. Piştî vê karesatê, kurdên Gurgûmê xwe sipartin tegera welatparêz.







**Kele**

Kela Mereşê li ser girê ku li nav bajêre hatiye damezirandin. Kele b.z di sedsela yekî de avabûye. Heta îro gelek caran tamîr bûye. Niha hin dîwarên kelê û sê birc li ser piya na. Beşên din ê kelê xerabûne. Dîwarên derve ê bircan, ji kevirên Birandî, ê hindir jî, ji kevirên molozin. Deriyê kelê, ji dar e. Ser darê derî bi tebeqekî hesin hatiye nixmandin û bi bizmarên gir hatiye zeximkirin. Kela Gurgûmê avahiyeke çargoşe ye.

**Mizgefta Mezin**

Li Gurgûmê berhemekî dîrokî jî Mizgefta Mezin e. Mizgeft li meydana Belediyê ye. Ji kîtaba ser deriyê taç tê fahmkirin ku mizgeft ji alî Begê Zulkaqiriyan Alaudewle ve hatiye avakirin. Pîlana mizgeftê çargoşe ye. Avahiyên bakûrê mizgeftê di demên paş de hatine zêdekirin. Minara mizgeftê serbixwe yê, li ser bingeheke çargoşe û wek silîndîrekî gilover e. Beşên jorîn ê minarê di demên paşîn de hatiye guhertin.

**Medresa Kevir**

Medresa Kevir li taxa Serê Pîrê ye. Di sedsala 14an de hatiye avakirin. Ji ber ku li ser tû nivîsarekî tune ye, kes nizane ji alî kê ve hatiye çêkirin. Beşên medresê li dora hewşeke çargoşe û fireh rêzbûne. Li milê rastê odeyên medresê, li hember deriyê mezin mescîta çargoşe, li milê çepê jî tirbeya ku baniyê wê wek pîramîdan hatiye avakirin, heye. Zêdetirê berhemên kevn ê nawenda bajêr, li Navça Avşîn; Mizgefta Mezin, Kulliya Eshabê Kêf, Kela Xurman, li Elbistanê jî nawenda arkeolojîk Girê Reş, Kela Keçikan, Mizgefta Mezin û Mizgefta Baba Hîmet jî hene. Dîsa li Navça Bazarcixê gelek bermayiyên dema Roma û Bîzansiyan heye.

**Sûk**

Wek hemû bajaran dû rûyê Gurgûmê heye. Rûyekî cade û kolanên modern, yanê kapîtalîzm, rûyê din jî, adet û kevneşopiyên berdewama sedan sale ye. Li Gurgûmê jî dema mirov berê xwe dide kolanên teng, ê ji çavan dûr, mirov rasti adet û kevneşopiyan tê.

Sûka sergirtî a Gurgûmê, wek taswîrekî alema çîroka ye. Qumaş û potên rengareng, kolanên teng, lazmatiyên cûrbecûr, ji hilatinê tavê, heta dereng çûndin û hatina bajarî, gundî û turîstan... Taybetiyekî sûka Gurgûmê, kêrên vî bajarî ne. Polayên kêran ku dû car tên avdan, bi doxên hestî tên zexmkirin. Wek hemû bajarên Kurdistanê di sûka Gurgûmê de jî sifirvanî cîhekî taybetî digre. Mixabin ev pişeyê kevnare, li Gurgûmê jî demên xwe yê dawîn dijî. Lewra pêşketina teknolojî û fabrîqasyonê, dawî li vê pîşeya giranbiha aniye. Endamekî sûka bajêr kurtanvan e. herçiqas li Gurgûmê, sanayî û otomasyon pêşketibe jî, li gundan hesp, qantir û ker hîn jî di jiyana gundîtî de rolên girîng dilîzin. Helbet pediwiyê van heywanan jî kurtan e.

**Şîrcemed**

Bêguman Gurgûm di salên dawîn de, bi şîrcemeda xwe hat naskirin. 'Maraş Dondurmasi' ku bi Tirkî wiha tê zanîn, ne tenê li Tirkiyê, an li Kurdistanê, li hemû Rojhilata Navîn jî tê naskirin. Şîrcemeda ku bi formulên taybetî tê amadekirin wek hesinekî nerm zexm e û ancax bi satoran tê jêkirin. Şîrcemed, di mehên havînê de, herareta dilê Gurgûmiyan ditefîne. Ev şîrcemed, ji şîrên bizinên ku li Çiyayên Mereşê bi giyayên taybetî xwedîdibin tê çêkirin.

# Îran kolberên kurd dikuje!



Siwar Bedirxan

Ji ber ku welat bi destê 4 dewletan hatiye dagirkirin û bi sînoran xak ji hev hatiye qutkirin, kolberî û encamên kolberiyê bo kurdan her wateya mirinê ye. Tevî mirina bi mayîn û teqemeniya çandî, li Rojhilat badora dewleta Îranê ya li ser kurdên kolber her girantir dibe. Her wiha rê li ber pêşketin û serçaviyên wan ên aborî jî tê girtin da ku kurd mecbûrî wan bibin û neçar bibin. Komara Îslamî ya Îranê ku heta niha bi dehan car tevkujî aniye serê kurdan, niha jî mafê kurdên Rojhilatê Kurdistanê roj bi roj binpê dike, dest bi serqutkirina kurdan dike. Li hêla din bi zêdebûna zext û zordariya Komara Îslamî di navbera sê mehan de 68 hemwelatiyên kurd bi teqeya rasterast a hêzên rejîmê û teqîna mayînan hatine kuştin. Li gel kuştina xelkê kurd Rejima Îslamî ya Îranê xelkê bi çalakbûna karê siyasî tewanbar dike û bi sedan ciwanên kurd zindannî dike.

Li gor zanyariyên hatine bidestxistin ji destpêka bihara 2015'an heta niha 43 welatiyên kurd bi teqîna yekser û mayînan jiyana xwe jidestdane. Rojnameger Eqball Şadî li ser binpêkirin û kuştina kurdên Rojhilatê rawestiya û raporta ku amade kiribû ji BasNûçe'yê re eşkere kir. Li gor raporê di heyama 3 mehên destpêka îsal de, 13 kolber bi sedema teqeya rasterast a hêzên rejîmê li ser sînorên Kurdistanê hatine kuştin û birîndarkirin ku ji vê hejmarê 8 kes hatine kuştin û 5 kesên din jî hatine birîndarkirin.

## 43 kolber katin kuştin

Li gor amarên berdest ê Şadî, di heyama 3 mehên bihara sala borî de, hêzên leşkerî yên rejîma Îslamî ya Îranê bi teqeya rasterast ji kolberên kurd di sînorên Kurdistanê de, 8 kolber kuştibûn û 3 yên din jî her bi wê hincetê birîndar bibûn. Di vê pêwendiyê de teqeya rasterast a hêzên rejîmê ji hevwelatiyên sivîl yên kurd di rê û cadeyan û li nav bajarên Kurdistanê di 3 mehên destpêka îsal de, kuştin û birîndarbûna 43 hevwelatiyên kurd li pey re bûye, ku ji vê hejmarê, 5 kesan jiyana xwe ji dest dane.

Her wiha di raporê de behsa kuştina 4 hemwelatî û birîndarbûna 8 hemwelatiyên din ên kurd yên ku di teqîna mayînên çandî jî dike. Li gor raportê di bihara 2015'an de, 20 hemwelatiyên kurd bi sedema teqîna mayînan jiyana xwe jidest dane ku 4 kes ji wan hatine kuştin û 16 ên din jî birîndar bûne.Li gor zanyariyê raportê di 6 milyon hektar xaka Îranê de mayîn çandîne. Bi giştî li ser hev 16 milyon mayînên çandî di seranserê Îranê de hene û li çar parêzgehên kurdnişîn li Îlam, Kirmanşan, Kurdistan û Urmiyê ji ber nerîna "ewlehî" û sînorîbûnê, zêdetirîn rêjeya mayîn çandî hene.Rejîma Îranê tevî vê ku kêmtirîn hewl ji bo hilgirtina mayînên çandî di sînoran de daye, bi hinceta rêgirîkirin ji "qaçax"a rojane ya di deverên sînorî de, mayînan diçîne û kolber û hemwelatiyên sivîl ji ber teqîna mayînan dibine qurbanî.

## Debara xelkê nebaş e

Rojnameger Şadî, piştî eşkerekirina amarên raporê li ser jiyana kolberên Rojhilata Kurdistanê rawestiya û da zanîn ku ji bajarê, Banê, Ciwanro, Merîwan, Bokanê xelk diçin kolberiyê û rêya kolberiyê rêya mirinê bi xwe ye. Di berdewamiya axaftina xwe de Şadî da zanîn ku xelkê Rojhilatê Kurdistanê jî baş zanin ku rêya kolberiyê karê kolberiyê karekî xeternak e û ew di her çûn û hatinê de mirinê bi çavê xwe dibînin lêbelê ji ber lawazbûna aboriyê ew nikarin dev ji vî karî berdin. Şadî wiha berdewam kir: "Ciwanên kurd ji ber bê karin û li Rojhilatê Kurdistanê kar peyda nabe ciwan, zarok, pîr, jin hemû kes diçin kolberiyê. Kolberî bûye pîşeyek. Ew dizanin rêya mirinê ye. Lê belê ew ê çi bikin. Weke din rêya debarê tuneye."

Di berdewamiya axaftina xwe de Şadî behsa jiyana komeleyatî ya xelkê Rojhilatê Kurdistanê jî kir û da zanîn ku xelkê Rojhilatê Kurdistanê, karê diziyê nakin, Hikûmeta Tehranê alîkariyê neda wan ku xerciyên xwe dabîn bikin û bikaribin debara xe bikin. Her wiha Şadî da zanîn ku bi çûna kolberiyê jî bi tenê ew dikarin xerciyên xwe dabîn bikin û ew bi zehmetî debara mala xwe dikin. Şadî wiha berdewam kir: "Bi kartoneke pêlav, bi kartoneke çay û qend bi du top qumaş ew tenê dikarin debara xwe bikin. Pasdar û Hikûmeta Îranê vê yekê jî qebûl nake û destûra nade wan ku du se qarton kel û per bînin û bi wan deabara mala xwe bikin.Pasdar an jî wan distînin an jî nagihêjin ew bigihên malê li ser rê wan gule baran dikin."

## Kuştina ajalên kolberan

Di berdewamiya axadftina xwe de Şadî bal kişand ser kuştina hêstir, hesp û kerên kolberên Rojhilatê Kurdistanê jî û daxuyand ku pasdarên li qereqolên li ser sînorê Rojhilatê Kurdistanê û Başûrê Kurdistanê ne, ker, hêstir û hespên kolberan gulebaran dikin û wan dikujin. Şadî ragihand ku roj namîne ajalên kolberan ji hêle leşkeran ve nayên kuştin. Her wiha Şadî da zanîn ku li ser sînor û herême bi sedan termên ajalên hatine kuştin hene û Komara Îslamî ya Îranê li ser ajalan jî komkujiyê pêk tîne. Li gel kuştina ker, hesp û hêstiran Şadî, da zanîn ku beriya niha bi çend rojan hêzên leşkerî yên sînorî li hêrêma Mirgeverê li derdora Urmiyê li gundê Mamêkan 800 ser pezên welatiyê bi navê Ebdulwehab talan kirine û 50 ser di encama gulebaranê de hatine kuştin.

## 'Terora dewletê'

Her wiha Şadî bal kişand ser Peymana Ottowa ya ji bo rakirina mayînan jî û da zanîn ku Komara Îslamî ya Îranê jî Peymana Ottowa pejirandiye û di wê peymanê de erê kiriye ku dê mayînan rake û ew ê xeteraya mayînan a li ser jiyana mirovan bi dawî bike lê belê heta niha Îranê hewldaneke wisa nedaye û ew xalên peymanê jî bin pê dike. Li hêla din Şadî, da zanîn ku her çend Yekîtiya Ewrûpa ji bo rakirina mayînan fişar jî danîbin ser Îranê jî Îran guh nade mafê mirovan û di nav qada siyasî ya cihanê de weke dewleta terorê tê zanîn û hemû cihan dizane ku Îran fişarê tîne ser gelê kurd û wan dikuje. Di dawiya axaftina xwe jî de Şadî da zanîn ku partiyên siyasî yên Rojhilatê Kurdistanê di nav hewldana rizgarkirina Rojhilatê dene û dewlet ji ber tirsa berxwedana Pêşmergeyên Rojhilatê Kurdistanê çavê xelkê ditirsîne û dixwaze ji xelkê re bêje ku ew ê destûra jiyanê neda wan. Her wiha Şadî amaje bi wê yekê jî kir ku hokara kuştina kolberan û binpêkirina mafên mirovan siyasî ye û dewlet bi kuştinan dixwaze tirsê di nava xelkê de ava bike.



Metelokên Zarokan

# Di wêjeya biçûkan de kelameke mezin

Mahir Berwarî

Metelok an jî gotinên pêşiyan rengek e ji rengên (şêweyên) çanda gelerî, ev çand e li ba her miletekî heye, zanayên gelan wan metelokan ji devê kesan digirin û dikin pirtûk, wan ji windabûn û ji bîrçûnê diparêzin, ev karê pîroz, komkirna metelokan bi demê re dibe cihê şanazî, serbilindî, zengînî û serfraziya wan gelan. Gelo Ji ber çî ev rengê çand û wêje (tûre) dibe cihê şanaziyê? Ji ber çi metelok hind (ewqas) cihekî bilind di kultura gelan de digirin? Çima gotinên mezinan bi nirxin (sûdin). Bersiva van pirsan û gelekên din divê mirov zelal bike, bi ya min be "Ji ber ku di deman demekê de gelan nizanîbûn gotinên xwe bixin ser peran, ew ji kesekî digihandin yekî din, ji nivşekî bo yê din taku zana bala xwe danê ku ev gotin bi demê û jiber serpêhatiyên dîrokî û xwezayi karin windabibin û bên guhartin, wan ew metelok xistin pirtûkan.

Ji aliyekî din ve, mirov dibîne ku gelek rengên jiyana civakî di wan metelokan de hene, bi lêkolîn û xwendina wan, em dikarin wê civakê nasbikin ka bê ev gel çawa jiyana xwe ya rojane birêvedibir (didomand), çawa şîn û şahiyên xwe diborandin. Hejî (hêjayi) gotinê ye ku em bizanîn weku di metnên (textên) van pend û metelokan de gelek raman, hizir û felsefa civakî hene, bi xwendin û şirovekirna metelokan, em dikarin nasbikin çawa evî gelî pirsên girêdayi karubarê mejî û raman bersivdidan. Ev reng e raman ez navê „felsefa civakî" lê dikim, metelok didin xuyakirin ka gel di çi astê pêşketinê de ye an çawa pirsên gerdûnî, olî, bîr û baweriyê bersiv dide. Ev tê wê watê ka çend pend, metelên mezina û metelok girin û pêdvîne (pêwîstin).

Çendî civak biguhere giringiya pendan bi demê re wenda nabe, vajî (beruvajiya) vê bi demê re hin giringtir dibin jiber ku şiklê jiyana pêşiyan di van penda de maye, wek a kurd dibêjin „Yê mezinê xwe nasneke biçûkê xwe jî nasnake". Ev pend dide xuyakirin, çawa pêşeroja biçukan girêdayi jiyana mezinane (pêşiyane), anku gotina „mezin" tê wata „dîrok" û peyva "biçûk" tê wata „pêşeroj", vê gavê kîjan gel dikare pêşerojeke baş dirustbike bê ku dîroka xwe bizanibe? Ev û çendî pend û metelokên din baş didin xuyakirin. Pêwiste mirov çanda gelê xwe ya gelêrî hînbibe û zanibe. Gelek caran min peyvên „pend û metelok" bihevre bikaraniye, herçendî herdu nêzî hevin lê cudayiyek dinavbera wan de heye.

Pend bi gelemperî karin û watek eşkere ne. Ew tên bikaranîn ta mirov wateya rûdanekê baş an xirab ronî bike. Lê metelok rengekî dine ji çanda gelêrî, ew pitir bikartên di şevbêrkên gelan de nemaze (bi taybetî) ji bo zarokan. Diyare, eger em vegerin jiyana xwe ya zarokiyê li gundan „helbet piraniya kurdan xelkê gundane" wê bê bîra me, çawa mezinan em zarok bi şevan dicivandin, em li derdora pixêrekê li ber agirê êzingan (bizot) metelok bo me digotin. Pir caran em dikirin du beş her beşek ji 3-4 biçûkan pêkdihat û ezmûnê destpêdikir mirov dikare navê „dibistanê" li wan şevbêrkan bike, di wan şevan de zarokên kurdan perwerde dibûn em fêrî (hînî) ziman, kurdînî, welatparêzî û çanda gelê kurd dibûn.

Ji ber nebûna dibistanên kurdan, zimanê kurdî di wan metelokan de zelal û can ma û hêj maye, wan rolê "ferhengê" girtiye. Diyare zanayên kurdan bala xwe ne dane komkirn û nivîsandina pend û metelokan, ew nedane ber çerxa rexne û şirovekirnê, lewra (lewa) bi sedan pendên kurdan bûne bara (para) jib-îrbûn û wendabûnê herwisa zanayên me gelek kêm dîrok giyografî, civak, serzemîn û binzemînê kurdistanê nivîsandine, em mane gelekî bê nivîs, çanda me maye çandeke devokî, çanda devokî zû zû ji bîr diçe û tê dizîn, lê yê nivîsî dimîne ji nifşên nûhatî re. Her di vî warî de tiştekî din diyare ku kurd gelek kêm dixûne, guh nade pirtûkê, xemê jê naxwe, bi komkirin û xandina pirtûkan mijûl nabe. Ger li cîhanê gelek hebe pêdvî xandinê hebe, gelê kurde. Ger li cîhanê gelek hebe ji xandinê direve mixabin dîsa gelê kurde.

Îro jî dem dema qelem û xandine, ne dema tifing û şûre. Helbet hin sedemên vê kêmasiyê hene, lê di vê gotarê de cih nîne mirov bi ferehî liser raweste. Tevî ev reng û pergala ku li jor hatiye nivîsandin, tevî çand û hunera kurdî, bi taybetî ya kurmancî, maye devokî. Lê di van çend salên dawî de rewş hinekê (tozekê) hatiye guhartin, va em dibînîn bi dehan nivîskarên kurd xwe bi çanda gelêrî mijûl dikin, çîrok, helbest, pend û metelokên kurmancî bûne mada pênûsa wan berêzan. Beriya demekê nivîskarê berêz „Bîlal Hesen" pirtûkek bi navê „pend û peng" weşand wî karekî gelek bi cefa kiriye, komkirin û çapkirina gotinên pêşiyan "pend" li vê deverê ez karim supasiya wî bikim û bêjmê „destê te saxbin û pênûsa te tim (her) zîndî be. Heyamekê bi şûnde me çavên xwe bi karê nivîsevanekî kurdî din kilda ew jî berêz „Mahirê Berwarî" ye. Xebat û bizava pitir ji 30 salên civandin, komkirin û weşandina metelokên kurdî ji her çar parçên kurdistanê ye. Berêz M.Berwarî di sala 2009'an de pirtûkek bi navê "Metelokên Zarokan" komkirin û amadekirn bo çapê û di meha gulana 2001 an de di çapxana xanî de li Dihokê weşand û pirtûkxana kurdistanî zengîn kir.

Ji nav û nîşana pirtûkê diyare ku nivîskar tenê metelokên zarokan û tiştên girêday wan komkirine. Ev tê wê watê ku taybetmendiyeke berçava pirtûkê heye ev jî eve. Di şevên zivistanan de zarokên kurdan li ber agir komdibûn û xwe bi metelokan mijûl dikirin, lê piştî heyamekê jiyana civakî hate guhartin, heyama metelokan cihê xwe da televizion û alavên teknîkî, ji nifşên nû re em dibêjîn „nifşên teknolojiyê", em şevên xwe bi lîstikên kompyoter, lêptopan û têlefonên destî (handy-mobil) derbasdikin û xwe pê mijûl dikin. Diyar e ku teknîkê zora civaka gundî biriye, di vê têkçûnê de metelok jî bûne qurbana vê hevrikiyê (nakokiyê). Meziniya birêz Mahir Berwarî ew e ku wî bi vî karê pîroz karîbû beşekî ji metelokan biparêze, ev jî cihê supasî, pîrozî û rêzgitinê ye.

Helbet taybetmendiyên dîtir yên metelokên zarokan hene ewjî evene:

1. Metelokên zarokan bi zimanekê asan (hêsan-sanahî) tên gotin taku mindal (zarok) bi lez têbigêhin. Ji ber hindê gelek metelokên pirtûkê bi zaraveyên deverî (herêmî) hatine nivîsandin. Nivîskar bi mebest dest di zimanê (devoka) metelokan nedaye. Lewa cara pêşî mirov baş tênagihe xwendina pirtûkê, vê gavê ne şerme ku mirov 2-3 caran her wê metelokê bixwîne.

2. Zaravê kurmancî li ser 3-4 zaravên deverî têne gotin û nivîsandin. Gavê mirov dibêje "zaravê kurmancî" ew nayê wata zimanekî yekgirtî, yê li seranserî herêmên kurmancîaxêf belavbûye, em tev dizanin ku ew zarave hatiye dabeşkirin ligor herêman.

3. Zaravê kurmancî li herêma badîna ne wekî yê herêma serhed, cizîr û çiyayê kurmance, ev jî dide xuyakirin ku çend pêtvî heye bo xebata ziman di vî warî de.

4. Nivîskar bi zanebûn pirtûka xwe bi zaravê kurmancî û bi tîpên latînî nivîsiye, wek wî bi xwe di pêşgotinê de eşkerekiriye. Ez arêşek e mezin di nivîsandina kurmancî de dibînim, belku di dîrokê de nimonek dî nebe ku zimanek bi sê elîfbaya bête nivîsandin. Gelo çawa xandevanê Dihokî wê nivîsa nivîskarê Amedê, Qamîşlo an jî Efrînê bixwîne û jê bizane. Gelo çawa nivîskarê Efrînê wê nivîsa nivîskarê Dihokê an jî Yêrivanê bixwîne ewê bi tîpên kurmancîkirilî dinivîse. Jiber hindê pêdvî heye bi yek elfabayê, bi ya nivîskarê pirtûka "Metelokên zarokan" be elfabaya kurmancîlatînî gelek asane ji bo kurmanciya me, diyare nivîskarê me Mahir Berwarî ne bi tena xwe ye di vê baweriyê de!

1. Pirtûka "Metelokên zarokan Mahir Berwarî 2009" jêderekê pir giring e di pirtûkxanên kurdan de jiber van egeran:

a. Hijmareke mezin ya metelokan têde hene ku digihine nêzî 870 heba.

b. Hijmareka baş ji metelokên kurdî ji hindabûnê qurtalkirine (rizgarkirine), cihê rêz û xelatkirinê ye.

c. Metelokên vê pirtûkê ji her çar parçên kurdistanê komkirine her kurdek dikare mifa jê wergire.

d. Ev pirtûke dibe bingeh bû pirtûkên dî yên dihêne nivîsandin li ser metelokan di pêşerojê de, nivîsevanên delîvê (biwarê) zarokan dikarin ji vê pirtûkê pirtûkên bi wêne û ciwan bû zarokên kurdistanê amadekin û li xandingeha mamosta mifa jê wergirin û zarokan pê hînî metelokan, bîrtîjî û sirtiya ezmanî bikin.

e. Di pirtûkê de Metelok bi çend zarav û zimana hene, ev giringe ku xandevanê kurd, taybet zarok, haya wî ji zaravên zimanê kurdî hebe.

f. Ev pirtûke li dûv şiyanên xwe li kurdistanê û dervey welat belavkirine û piraniya wan bi herwe (belaş) dike diyarî Malbat û zarokên kurdistanê taybet zarokên kurd yên dervey welat jê bê par nekirine.

g. Her kesê vê pirtûkê bixwîne wê bizane ka zimanê kurdî çend fireh, belav û aloz e, pêdviya zimanê yekgirtî (standerd) hestpêdike, êdî wê hewilbide xwe ji zimanê deverkî (herêmî) qurtal ke û bi zimanekî têkelkirî û bijûn (paqij) biaxive.

Di dawiya vê nivêsê de ez di wê hêviyê de me ku ev pirtûk û gelekên dî bibin xemla pirtûkxanên malbatên kurd, çi li welat be an li dervey welat be.Hêvî ewe ku foklora kurdî bibe babeta ramana nivîskarê kurd û bibe armanca pênûsa wan birêzan.





# Jin mohra xwe li bazarê jî dixin

Lîsa Deysem

Di çarçoveya xebatên beşdarkirina jinan a cîhana kargeriyê de ji bo jinan beşên nû yên xebatê têne terxandin da ku jin bi awayekî çalak beşdarî jîyana aborî û çandî bibin. Li gel gellek qadên xebatê, di sala 2013'an de Şaredarîya Rezan a Amedê ji bo Bazara Westar a Jinan qadeke nû ya îstîhdamê ji jînan re vekiribû. Di vê bazarê de nêzîkî 160 jinan berhemên ku ji hala zewzeyan an jî ji gundan disten-din li van bazaran difirotin û pê debara xwe dikirin. Berê tenê li vê bazarê kar dikirin, lê belê niha li bazarên seyar ên taxan jî berhemên xwe difiroşin û qada bazara xwe berfirehtir dikin.

## Pîşeya nû ya jinan: Bazarvanî

Gerînendeya Polîtîkayên Jinan a Şaredariya Rezan Gulfer Coşkun da zanîn ku Şaredariya Rezan 3 sal berê bi mebesta beşdarkirina jinan a li jiyana aborî, Bazara Taxê ya Westar çêkirî ye û jinan li vê bazarê dest bi frotina berhemên cihê yên wek zewze, fêkî, tuhafiye û şarkuteriyê, xavûcav û hwd kirî ye. Coşkûn got; "Mebesta me ya din ev bû ku em li derveyî qadên ku rolên aborî ên jirêzê û hînbûyî jî piştgiriye bidin jinan. Ji ber ku jin piranî bi pîşeyên kevneşop ên wek dirûtin, destkarî, nêrdevaniya nexweş û zarokan re mijûl dibûn, ev pêşnûmaya me, li aliyekî piştgiriya aborî dide jinan, li aliyekî jî encama têkoşîna regezî ya jinan dide xuya-kirin. Bi vê yekê 3 sal berê şaredariya me pêşniyaza vê bazarê kir. Niha em jî li ser vê ezmûnê wê geş dikin." Coşkun da zanîn ku şaredarî van jinan ji taxên xizan ên Rezan hildibijêre, jinên ku dixwazin bixebitin hay-dar dike, bi wan re hevpeyvînan çêdike û wan tevlî vê bazarê dike. Coşkun destnîşan kir ku di destpêkê de ew, perwerdehiya regeza civakî jî didin jinan.

## 'Her ku diçe mêr razî dibin'

Gulfer Coşkun da zanîn ku taybet di sala destpêkê de ew rastî bertekên tund ên wek; 'Nabe jin di bazaran de bixebitin hatine, lê belê jinan dev ji vê têkoşînê bernedane, heta ku hevjînên wan jî vê yekê qebûl kirine û ji ber ku dezgeh û qase giran in, serê sibehê ji bo damezirandina dezgehan alîkariyê didin jinan û ji qada bazarê derdikevin. Coşkun da zanîn ku ji malbatên van jinan pir zelal dixuye ku rolên civakî ên hînbûyî û rûniştî hinekî nerm bûye û pêşve çûye. Gulfer Coşkun destnîşan kir ku dest-keftiyên perwerdehiya Zayenda Civakî ku Şaredariya Rezanê didê, ji pêşniyarên van jinan ên derbareyê bazarê de pir zelal tên çavdêrîkirin, jin, hêdî hêdî di karên xwe de dibin pispor, li nav malbatê jî hê bi xwe bawer dibin. Coşkun got ku Şaredariya Re-zanê ewil Bazara Westar ji jinan re vekiribû lê gelek pirsgirêk derketine, lewre ev jin, di qada aborî û hilberandinê de nû bûn û berê qet ezmûneya karî nejiyabûn, bi tomerîfiroşan re tengasî dijiyan, lewre tomerîfiroşan ji bazarvanên mêr buhatir ber-hem didan jinan ev yek jî ban-doreke neyînî li rêjeya firotinê dikir lê aniha ev pirsgirêk ji holê rabûye ji ber ku êdî jinên bazarvan baş izanin ku ji kê çi bistînin, bi çiqasî bistînin, her wîha tomerîfiroş jî êdî hînî danûstandina bi bazarvanên jin bûne. Ber-pirsiyara Yekeya Îstîhdam û Aboriya Jinan Fatma Gultekin li ser bandora îstîhdamki-rina jinan û perwerdehiya zayenda civakî de wîsa axivî: "Hikma mêran li ser jinan bi awayekî cidî hêdî hêdî radibe, hem di nav tomerîfiroşan de hem jî di nav malbatê van jinan de rengê xwe dide der. Cudahiya di navbera buhayên ku tomerîfiroş didin jin û mêran, nîşaneya zordestiya hişmendiya bavsalar a ku bi sedsalan e didome ye.

## 'Sazî di nav hevkariyê de ne'

Gulfer Coşkun behsa xebatên li ser îstîh-damkirina jinan kir u got ku şaredariyên din ên Amedê, li ser malbatan hin xe-batanên bi vî rengî dimeşîne, bi taybetî bo piştgiriya pêvajoyên hilberandina çolterî û gundewarî hin projeyan saz dikin, bo nimûne; Şaredariya Mezin, hin qadan ji bo karkerên çandinî ên demsalî vekir û ji serî heta dawî ew xistin bin rêvebiriya van mal-batan. û malbat aniha berhemên ewil ên palehiyê rakirin û difiroşin, bi saya vê yekê vê demsalê bo karkeriya çandinî ya demsalî derneketin derve. Her wiha Gulfer Coşkun da zanîn ku aniha dora 160 jinên bazarvan di lîsteya Şaredariya Rezanê de tomarkirî ye û dora 80-100 jin, bi rojane dikevin bazaran lê cihê bazara wan a tehsîskirî bi 200 dezgehî ye û hêdî hêdî hejmara bazarvanan zêde dibin. Fatma Gultekin jî anî ziman ku xebateke Şaredariya Rezanê ya din jî Kooperatîfa Jinan a Rezanê ye ku ji 9 salan zêdetir bi hevkariya sazî û dezgehên din ên jinan dixebite û carinan di projeyên hevpar de jî cih digire. Fatma Gultekin wisa domand: "Xebata dawî a Kooperatîfa Jinan a Rezanê li ser xavûcav û cil û bergên herêmî ye. Aniha 6 jin di vir de dişixule. Li kargehên xwe van cil û bergan difiroşin. Heta ku wan jinan, bi destan çente çêdiki-rin û gelek daxwaz li wan hatin kirin. Heta ku li Rojavaya Tirkiyeyê rahijmendên jin xwestin bi wan re bişixulin û bo îstîhdamki-rina van jinan hewldaneke wan çêbû."

## Bazarvanên jin: Berê her kes matmayî dima

Li bazara ji bazarvanên jin pêkhatî, bix-webawerbûna jinan pir hêsan tê çavdêrîki-rin. Jin giş tînin ziman ku bi bihêzbûna aborî, soza wan hem li jiyana malbatî, hem jî li jiyana derveyî derbasdar dibe. Yek ji van bazarvanan Xezal Tunç danasîna xwe bi Basnûçeyê re kir. Xezal Tunç ku ji sala 2013an ve li vê bazarê dişixulî got ku berê jî ew di bin destê hinekan de şixuliye bes bi saya şaredariyê êdî karê xwe dike û bûye patrona xwe. Tunç anî ziman ku di malbata wê de ji bilî wê kes naşixule û ew debara mala xwe bi bazarvaniyê dike. Tunç serpêhatiyên xwe bi me re parve kir û wisa axivî: "Jin bi giştî ji malê dernakevin lê ez gund bi gund digerim. Gava mêran ez didîtim matmayî diman û digotin em nahêlin jinên me ji malê derkeve, tu hatiyî bazariyê dikî. Piştî ez çûbûm Qerecdaxê jinan ez dîtim û 8 jin hatin serî li vê bazarê dan û êdî serî li hemberî mêran natewînin. Rêxistinbûyîna jinan tê vê wateya ku tu tenê xwe xelas nakî, jinên derûdorên xwe jî xelas dikî. Jinên vê bazarê piştevaniya hev dikin. Her kes derdê hev dizane, ev yek di genetîka erdnîgariya Kurdistanê de heye. 3 sal berê tomerîfiroşan gava em didîtin matmayî diman û gotin hûn jin ni, herin malê, hûn hatine vê derê çi, qey bazarvanî karê jinan e? Lê aniha gava em diçin bi xêrhatinê pêşwazî me dikin. A rastî li Kurd-istanê têkoşîna jinan ji her tiştî girîngtir e. Heke em di nav têkoşînê de bin li hemberî dewletê jî li hemberî her kesî jî em ê li ser piyan bimînin." Bazarvana din a bi navê Nurdan Saltıka ji Bartınê jî anî ziman ku te-vlîbûna jiyana aborî bandoreke erênî kiriye jiyana wê û azadiya wê hê zêdetir bûye. Saltık got ku berî ku zarokên wan ji wan bixwazin, ew pêdiviyên zarokên xwe peyda dikin û daxwazên wan bicih tînin.



Fatma Gultekin — Gulfer Coşkun



Evîndar Tekîn

Kurdolog Bochenska:

# Folklora kurdî bo cîhanê ezmûnek e



Peywirdara Zanîngeha Jagiellonian ya Krakovê (Polonya) Kurdolog Dr. Joanna Bochenska ku, di derbarê çand û wêjeya kurdî de tespîtên balkêş dike û dibêje ku potansiyeleke mezin di edebiyat û çanda kurdî de heye ku divê li cîhanê bê nasandin da ku netewên din bi awayekî kûr fikr û ramanên, hestiyar û daxwazên kurdan nas bikin. Her wiha Bochenska bal kişand ser folklora kurdî û got ku folklora kurdî bi ramanên kûr ên felsefîk dagirtî ye û a ku ew li pey wê ye ev e ku nirxên mirovahiyê li nik kurdan çawa anîne zimên.

Dr. Joanna Bachenskaya pispora nas-name û wêjeya kurdî ku bi teza xwe ya doktorayê ya bi navê 'Di Navbera Tarî û Ronahiyê de' û berhemên kurdî werdiger-îne bo zimanê polonî da ku bi rêya çand û hunera kurdî, hest û ramanên kurdan li cîhanê bên nasandin. Her wiha Bochenska tevî hevalên xwe komeka kurdnasiyê li za-nîngeha Yagiellonskî ava kiriye û xebatên xwe li ser malpera www.kurdishstudies.pl diweşînin.

Bochenska di derbarê geşedana nas-nameya kurdî de anî zimên ku nasname, ne ew tişt e ku bi dawî bibe, û wiha domand, "Bêguman berê navê 'Kurdistan' hat bikaranîn (bo nimûne di sedsala 19an de August Kościesza- Żaba yê li nava kurdan wek Jaba tê naskirin, ku digel Mele Mehmûdê Bazîdî xebata li ser zargotina Kurdan dikir navê "Kurdistan" bi kar aniye) û gelek taybetmendiyên çand û dirokî ya vê heremê hebûn, lê avabûna nasnameyan pêvajoyeke nûjên e û her berdewam e. Kurdên îro ne weke kurdên sed sal berê ne, ev yek jî bi meseleya modernbûnê ve girêdayî ye." Li aliyê din Bochenska balkişand ku di destpêkê de tenê komeke rewşenbîr nirxên rojavayî ên wekî demokrasî, netewe û hwd. fahm dikirine û ji ber vê yekê dem lazim e ku ew nirx şikla xwe ya kamil li Kurdistanê û Rojhilata Navîn werbigrin. Bochenska bale kişand ku digel ku neteweyên kurd û ermenî ji hêla tirkan ve hatibe înkarkirin û nûjenî bi rêya tirkan ve hatibe Kurdistanê jî, Kurdistan, xwedî nasnameyeke taybet bûye ku di sedsala 19'an de ji tekstên Żaba û Bayazidi ev pir zelal e û wiha got; "Kurdistan, tevî taybetmendiyên xwe yên çandî, neteweyî û siyasî hebû. Lewre em nikarin bêjin neteweya kurdî ya îro tenê girêdayiyê têgehên nûjen e."

## 'Nasnameya kurdî ne tenê sembola siyasî, her wiha sembola çandî ye jî'

Bochenska bale kişand ku gelek caran nasnameya kurdî wek sembolên siyasî ên wekî alaya Kurdistanê, xaka Kurdistanê û hwd. tê zanîn lê nasnameya netewa kurd ne tenê ew e û got ku îro nivîskarên kurd gelek sembol û taybetmendiyên çanda kurdî ên kevin di berhemên xwe de bi kar tînin, bo nimûne di çanda êzdiyan de Melekê Tawis gelek nirxên felsefîk, sincî û etîkî di xwe de dihewîne ku nasandina evîn, azadî û gelek tiştan jî xwe dide der û wiha domand; "Bo nimûne motîfeke êzdî û zerdeştiyê ye ku xirabî carinan dikare bibe sedema başî jî, û başiyê dikare bibe sede-ma xirabiyê jî. Ya ku li gor Ehmedê Xanî vê dualizma dinyayê bi hev girê dide, evîn e. Ji bilî vê Beko, di Mem û Zîna Ehmedê Xanî de cihê şeytanê digre lewre ew bixwe kiryarên xirab nake, bi pistepistên wî xi-rabî ji destê Mîr Zeyd derdikevin. Yani em baş dibînin ku yê ku berpirsyarê xirabiyê mirov, ne ku şeyten e. Weke xirabî motîfa "evîn" jî di wêjeya kurdî de pir tê bi-karanîn ku Xanî, berhema xwe bi "Evîna Xwedê" dide destpêkirin ku ev evîn ne tenê Evîna Xwedê an a Mem û Zînê ye, her wiha rola evînê ji bo desthilatdarî û hikmê heye ku di Mîr Zeyd de xwe dide der ku Xanî dibêje heke di dilê hikûmdarekî de ev evîn tune be, ew nikare bibe hikûmdarekî baş." Her wiha Bochenska got ku heke nivîskarên îro vegerin berhemên kevn û van mijarên felsefîk bi şiklekî nûjen vebêjin ev jî dibin nasnameya çanda kurdî û nasandina van hêmanên çandî, sed qat ji dirûşmên siyasî çêtir in ji ber ku bi rêya naskirina çanda kurdî mirovên din hest û ramanên, felsefe û sincên kurdan dê nas bikin û pê re jî kurdan dê baş fahm bikin ku çi dixwazin û li cem kurdan "mirovahî" tê çi maneyê."

## 'Folklora Kurdan bo mirovahiyê ezmûneye girîng e'

Bochenska bale kişand li ser dewle-mendî û girîngiya folklora kurdan jî û got ku bo nimûne folklora poloniyan bi qasî a kurdan dewlemend nîn e, ji ber ku gelek tişt jê ketine lê folklora kurdan nirxên felsefîk, etîk û estetîkê parastiye û ji ber vê jî pir dewlemend e. Her wiha folklora kurdî bo mirovahiyê ezmûneyeke girîng e. Bochenska got ku di folklora kurdî de yek ji hêmanên sereke "wêrekî" ye ku berê di civaka kurd de kirîtera hebûn an tunebûna mirovan bûye û şerefa mirov pê ve girêdayî bûye. Bochenska anî zimên ku ji bilî wêrekiyê, evîn û erotîzm jî di çand û wêjeya kurdî de balkêş in, lewre nûjeniya biqîmet li ser wateya evînê ava dibe û edebiyata kurdî her cure evîn di xwe de dihewîne û wiha dirêjî da axaftina xwe; "Her wiha evîna welat jî heye. Xwedê jî tê maneya evînê û destpêka berhema Xanî Xwedê bi saya evînê dide nasîn. Xanî evînê dide destê Xwedê ku ev amûr di beytên êzidiyan de jî heye. Di Xanî de bi rêya Evîna Xwedê mirov azad dibe, di bin bandora mirovên din namîne, ji ber vê em dikarin bêjin ku evîn wateyê dide azadiyê jî."

## 'Lazim e wêjeya kurdî ji Kurdistanê derkeve'

Bochenska bale kişand ku potansiyela wêjeya kurdî mezin e û divê ji Kurdistanê derkeve û bi rêya wergerê li cîhanê xwe bide nasîn. Her wiha Bochenska got ku wêjeya kurdî bingeha xwe ne tenê li ser bingeha wêjeya rojavayê xwe ava dike ku taybetiya wê jî ji vir tê û heke nivîskarên kurd berhemên xwe tenê li ser têgehên siyasî ava bikin û bi perspektîfên din nenêrin dê nikaribin bedewiya wêjeya xwe binasin û bi xwe bawer bibin. Bochenska anî zimên ku bo nivîskarên kurd yek ji tiştên girîng ev e ku divê bi xwe bawer bib-in lewre wêjeya kurdî xwedî taybetiyekê ye û ne mecbûre bişibe wêjeya rojavayî. Her wiha Bochenska diyar kir ku zaravayên kurdî jî dewlemendiya zimanê kurdî ne lê nivîskarên kurmanc û soran hev nas na-kin, divê têkilî di nav wan de xurttir bibe, divê bên ba hev û li ser wêjeya kurdî bi hev re biaxivîn. Bochenska got ku, ferhenga van zaravayan pir dewlemend e, ev yek jî potansiyeleke mezin bi xwe re tîne. Her wiha Bochenska got ku nivîskarên soran û kurmanc jî berhemên hev naxwînin lewma tu tişt li ser edebiyat, raman û bedewiya berhemên ciranên xwe nizanin.

## Xebateke ji bo berawirdkirina rêxistinên çandî

Joanna Bochenska têkildarî saziyên ku aniha ew li ser çand û dîrokê xebatan dikin de jî da zanîn ku hinek ji wan li Stenbolê rêxistinên girêdayî HDP'ê lêdikolin û dixwazin saziyên kurdan ên çep û îslamî bidin ber hev. Bochenska anî zimên ku ji bilî sazyên berbiçav, saziyên biçûk jî hene û ev yek dewlemendiyekê ye. Bochenska bale kişand ser girîngiya Nûbiharê û got ku Nûbihar, bi berdewamiya xwe ya li ser çanda kurdî, bi nirxdayîna zimên û bi aliyê wan ê felfefîk pir girîng e, her wiha "dema şerê digel DAIŞê em dixwazin îslama kur-dan jî bidin nasîn ku pê re girîngiya wan jî dê derkeve holê"

Zarathustra Gabar Çiyan

Helbestvanê suryanî Nuri Günel

# Êşa evînê heta mirinê helbestê dihone...

Di nava helbest û helbestvanên cîhanê de çavkanî an jî siûdgirtineke balkêş helbet dîrok û rabirdû ye. Lê dema ku meriv di nava helbesta cîhanê de bala xwe dide helbest û helbestvanên suryaniyan ew mijar wek çavkaniya sereke derdikeve pêş. Helbestên ku ji aliyê helbestvanên suryanî ve hatine nivîsandin bi piranî ji dîroka kevnare dadirivin û ta digîhîjin Gilgamêş jî.

Helbestvanên suryanî ji destan û çîrokên bi zimanê Îsayê Meyremayê, nazikî û kurahiya xwe distînin. Hezkirin û evîndariya ji dil tesîrê lê dike. Di evîndariyê de, nirxê cananê herdem bilind e. Bi fermanên kitêba pîroz Încîlê û exlaqê Mesîh, dilgirêdana hetanî mirinê dihênin pê. Sevdayê bilindtir dikin. Girêdana bi êkûdu xurtir dibe û tê roja me. Helbest rengek modern û bi şopên klasîk derdikeve pêşberî xwendevanên xwe.

Bi sebir in helbestavên Suryaniyan. Mîna eşqa bi naz e, helbestên wan. Wext digire, heta evîn bibe du alî, helbest rengê xwe jê bigre. Evîndariya wan bilind bibe bi wextê re, bi awirên çawan, lêvên tî û helbestvan bi dizî dibe şahidên evîndaran. Carna bi naz e canan, ne tê dîtin, ji hemêzkirin û ramûsanekê ne amade ye û helbestvan dibê pila dilê herduwan, tercumaniyê ji hîsên wan re dike.




Bi boneya mijarê meriv berê xwe bide helbestvanê suryanî Nuri Günel di cîh de ye. Nuri Günel, bi helbestên xwe li ser evîndarî û hesreta xerîbiyê û welêt tê nasîn. Di medya civakî de, pir tê xwendin. Günel, bi eslê xwe ji Tora Evdînê, Keferzê, gundek ji ên Midyadê ye. Pişta xwendina navîn, dibistanê bi cî dihêle û li Amedê li tesîsên NATO'yê dixebite. Paşê li Ealmanya'yê bicîh dibe. Bi teqawîta xwe re, jiyana Ewropa'yê bi cî dihêle û tê Amedê. Niha li wir dijî. Me xwe gihand wî û em pê re, li ser helbestên wî, eşqa kur û hesreta welêt axifîn.

**Çi demê nivîsîna helbestan dest pê kir? Ji kerema xwe hun dikarin qala helbesta xweyî pêşî bikin?**

Navê helbesta minî pêşî "Meçhul" bû. Min di sala 1981'ê de li Ealmanya'yê nîvîsîbû. Bêhtir nakokiyên civakî dianî zimên. Pirsgirêkên "welatê nû" hembêz dikir. Ez demekê baş bi nivîsîna helbestan mijûl bûm. Paşê, giraniya xebatên min li ser muzîkê ket navbêrê. Hetanî sala 2010'an wiha domkir. Lê herdem, nivîsîn û cihê helbestê di dilê min de bû. Êdî, min fêm kir ku, ez nema karim rê li pêşiya hîsên ku bû mîna lehiyekê, bigrim. Bi xurtî li nivîsîna helbestan vegeriyam.



**Di helbestên we de, evîndarî bi hîsên pir kur û zimanekî bilind tê zimên. Çima?**

Bê evîndarî, eqşa ji dil, bêmiradî, hesret û hîsên zindî, helbest nayê rayê. Eşqa ji dil û bi dil, dikare wê hîsa bilind îfade bike. Ev hîs û êşa evînê ku bi mirov re diçe heta gorê, helbestê zindî dike û hilma însanî didiyê. Lewra eşq hîsek însanî ye, ew hîs, bi evîndariya ji dil xwe dide der. Dibe helbest, çîrok ji roman û fîlman re. Dema biçûkbûnê bi dawî bû û ciwantiyê dest pê kir, ez aşiqî dîlberekê bibûm. Bi heft dilan, dil ketimê de. Miradê me tev nebû. Çend havîn û çend çile di ser ve derbas bûn, ez nizanim. Ez zewicîm û evînê jî wiha. Belê, piştî ewqas û dem û sal derbas bûn, li deverekê liqayî hev bûn. Volkana dilê min ku min, vemirî dihejmart, razayî derket. Min fêm kir ku, jibîrkirina eşqa pêşî ne hêsan e. Em herdu jî zewicî bûn. Adet û tore, bawerî û bêşensiyê, di nav me de, çiyayên bilind bi newalên kur lêkiribûn. Tenê peyv mabû û hîs dibû zimanê dil. Pênûsê derdê min dianî zimên. Piştî dîna wê, êdî helbest bûn sebra min.

*Yarê*
*min xwest te jibîr bikim*
*xweliya ji bîranînan maye*
*bikim goristan*
*tê de bi cîh bikim*
*nebû*
*min nikarî bû*
*sevda te bedena min rapêçabû*
*dest hatibûn girêdan*
*di şûna te te de yara min*
*her roj*
*ji nû ve dibim qûrban...*

**Hilma hesretê ji helbestên we difure. Bêriya welêt, axa lê mezin bûye, mirovên li wir dijîn û xweza, tev tê de cî digre. Mîna gelek helbestvanê suryaniyan, hun jî helbetsên xwe di derbarê bêrîkirinê, bi evînê dikemilînin. Hun dikarin qala vê hereta xwe ji me re bikin?**

Belê. Mirov bi erd, cîh, çand û zimanê xwe heye, bihêz e. Piştî derketina derveyî welêt, hesreta welêt, cîh û axa ku ez lê mezin bûm, nas û dostan, mirovên wir di dilê min de bû. Bêrîkirin û hesret di helbestan de dihatin zimên, lê ez bi xwe jî di nava wan peyvan de, di helbestê de bûm. Min nema debar kir û ez li cî û welatê bav û kalên xwe zivîrim. Niha êş sivik bûye, lê bandora wê êşê di hemû azayên laşê min de, hêdî hêdî xwe dide der. Ez gelekî hez ji axa welatê xwe a sor û reş dikim. Tevayê însanên vî cihî dikim. Ji bo min, ji zêr û yakudê jî bi nirxtir in. Ev girêdan û hezkirina min hetanî mirinê jî wê bidome. Hezkirin wê tevlî axa gora min bibe û bibe kulîlk, bêhna dostaniyê û hezkirinê belav bike. Reng û baweriyên welatê min, kurd, suryanî, êzdî gelek êş dîtine, kişandine. Di nav mecalên kêm û jiyaneke dijwar, mîna duhî îro jî, dijîn. Bi derdê wan re dijîm û êşa wan di dilê xwe de hîs dikim. Ez jî niha bi wan re me, heman êşê dikşînim. Eger bibe qismet, dewr bê guhertin, şertên baştir werin pê, ez dixwazim roja xweşiya wan jî li nik wan bim, bi wan re bikenim, kêfê parvekim. Evîna hezkirina min, weke helbestvanekî suryanî, ev e. Sira vê, heskirin e. Girêdan e.

*Di berbanga piştî şeva kor û tarî*
*qêrînî û axîna ji Nînovayê bilind dibû*
*dikir lehî ji hêstirên dayikan*
*çiyayên Colemêrgê li ber xwe dibir*
*tevlî Zêyê Mezin dibû*
*çav û dilê minî bûye gol ji hêstirên xwînî*
*ava wê soreraş dikir...*

**Em helbestên we bi saya medya civakî dixwînin. Pir tên xwendin û belavkirin. Niyeta we û berhevkirina wan di kitêban de heye, an na?**

Belê, planek minî wiha heye. Ez li ser wan kar dikim. Ez dixwazim wan di pirtûkan de bicivînim. Bêhtir bi tirkî ne. Ez dixwazim helbestên min, li Amedê, bajarê kevnare, di nav xelk û baweriyên ku jê hez dikim, bi kurdî jî bêne xwendin. Lewra ji bo wergêra wan, li benda hevkariya dostên mîna we me...